Demokrasî bo Îranê
Hejmar:5 Marcha 2004

# agirî

Otonomî bo Kurdistanê
Xakelêweya 1383'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## Newroz hat û sala nû ye ....

Befrên çiyayên Kurdistanê îsal bi awayek xurttir ji salên berê dimehiyên. Dayîka niştîman demek dirêj e biharek wilo bi xwe nedîtiye. Mizginiya vê biharê li dema hilketina adara sala par hêdî hêdî xwe di deverê de belav kir. Gelê Kurd li seranserê welatê par par kiriye me, bi awayek taze xwe bo hemmêz kirina biharê hazir dikin.

Xemla bihara gelên Îranê bi proteste kirina şanoya hilbijartinê dest pê bû. Melayên reşperist û çekçekûleyên reşpirest bi awayek bê wêne li 25. salvegera şoreşa gelên Îranê dengê bilinde NE ji gelên Îranê bihîstin. Ew neya xasmayî li Kurdistanê bilindtir bû û sebay beşdarî nekirinê yên beşdarî kirî jî piraniyan bergên sipî xistine sindoqên hilbijartinan.

Newroza îsal bo gelê Kurd wateya rastiye Azadiyê bi xwe aniye. Mizginiya Newroza îsal pesend kirina Distûra bingehîne Îraqê ya demî ye ku tê de mafê Federalî bo gelê Kurd hat pesend kirin û Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi awayek fermî wek şanaziyek li xwe birêvebirina Kurdan û deverê hat nirxandin.

Nûçeya pesind kirina Distûra Îraqê ya demî li roja 8. meha Adarê ku roja navnetewiye Jinan e, li Kurdistana Îranê bi aheng û coşek mezin hat wergirtin. Li Başûrê Kurdistana Îranê hetanî gund û bajarên Bakûrê welat, li zanîngehan de, li nav mizgewt û kulanan de serkevtina han hat pîroz kirin. Li agirê Kuleçarşembiya îsal şadî û hêviya gel xuya dike û xurûra neteweyiya gelê me bi awayek bêwêne biriye ser.

Şovinistên Ereb nekarî bûn tehemmûla van serkevtinane bikin ku gelê Kurd li Kurdistana Îraqê bi dest anî bûn, lewma li ser û bendên 16'mîn salvegera karesata Helebçê, rejîma Beesiya Sûrî li bajarê Qamişlo gelê kurd bi xwînê gewizand û li midehê çend rojên derbas bûyî de bi dehan ji xelkên sivîle Kurd li Kurdistana Sûriyê hatin şehîd kirin û bi hezaran hatin girtin. Di hember da Kurdên wê perçê ji Kurdistanê bêdengiya xwe ya dirêj şikandin û taboya tirs û xofa Beesiyan bi şikandina Heykelê Hafiz El Esed şikandin.

Gelê me bi gotarek nû ber bi pêşwaziya sala nû diçe. Li cîhana informasyon û ragahendinê Kurd li deverê de wek dînamîzma demokratîzasyona Rojhelata Navîn tên dîtin. Xasmayî li Kurdistana Îranê xwesta demokrasî û çareseriya pirsgirêka neteweyên bindest bûye dirûşm û xwasta piraniya gelên bindeste Îranê.

Toqa tirsê mêjve ye li serê me Kurdan rewiya ye û bahoza azadîxwziyê li çiyayên Agirî ve ber bi deşt û newalên Kurdistana rengîn ji bo damezrandina Îranek demokratîk li ser bingeha bi fermî nasîna mafên gelên bindest biskên bûka azadiyê dixemlîne.

Newroz hat û sala nûye, Cejna me ya bîst û êkê.

Newroz li gelê Kurd û li hemû endam, alîgir, kadr û pêşmergên qehremane Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê Pîroz be.

*Sekreterê giştiye Partiyê di Peyama Newrozî de:*

## Em bi yekem tîrojka roja Newrozê şewq û pirîşqa hêvî û xweziyê dibînin

Bi sedema hatina cejna Newrozê û sala nû a Rojî hevalê xebatkar Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiye Partiya Demokrata a Kurdistana Îranê payamek giring bo xelkê xebatkare Kurdistan û gelên mafxwar û têniyên azadî û wekheviyê û, qat û texên azadîxwaze civaka Îranê şand.

Deqa peyama Newrozî a Sekreterê Giştiye Partiyê di rûpelê 2'e vê hejmarê de katiye berçavê xwendevanan.

## Rêz girtin ji roja şehîdên Kurdistanê



Bi boneya 10'ê Xakelêwê, 57'mîn salvegera li darvekirina Pêşewa Qazî Mihemd û hevalên wî (roja şehîdên Kurdistanê), rê û resmek hêja û berfireh bo rêz girtin ji vê roja dîrokî li yek ji binkeyên Deftera Siyasî a PDK Îranê hate lidarxistin. **Doma wê bo 9**

## Em serkut û kuştina xortên gelê Kurd li bajarê Qamişloyê şermezar dikin



Di 13'ê Adara sala 2004'an piştî birêveçûna kêbirkêya Fotbalê li bajarê Qamişloyê di Kurdistana Sûriyê de hejmarek berbiçav ji Erebên Sûriyeyê ku pêştir bi kêr, xencer û çomaqan rijiya bûne nava yarîgehê û her di destpêkê ve bi merema pêk anîna alozî û şer firotin bi Kurdan re hatibûne wî cihî, fitneyek wisan pêk anîn û bi curekê seha xortên gelê Kurd di wî welatî û wî bajarî de birînadr kirin ku ji wan re rêyek ji bilî derbirîna bêzarî û berxwedaniyê nehêlan. **Doma wê bo 12**



*Sekreterê giştiye Partiyê di Peyama Newrozî de:*

# Xebata xelkê me bo azadiyê ketiye qonaxeke nû, qonaxa hişyarî û berçav ronî, qonaxa vereviyana tem û mij û gumanê, qonaxa ji hev kirina dost û dujminan û qonaxa hevgirtin û pişt bi hevdanê ye

*Hevwelatî ên birêz!*
*Xelkê xebatkare Kurdistanê!*
*Gelên mafxwar û têniyê azadî û wekheviyê di Îranê de!*
*Jin û ciwanên xebatkar! Mamosta, karmend, kedkar, cotkar û tex û qatên şoreşvan û azadîxwaze civaka Îranê!*

Dîsan salekî din bi ser jiyana xelkê Îranê di bin sîbera deshilata nehs a Komara Îsalmî de dawî pê hat û em bi pêşwaziya saleke nû çûn. Sala 1382'an bo gelên Îranê saleke pir îza û êş û elem, pir cehd û têkoşîn, pir ji evraz û nişîv û pir ji ceribandin û taqî kirin bû. Komara Îsalmî di vê salê de jî wek salên rabihorî û zêdetir jî zext û givaş şopandin, cinayet afirandin û ziyan û derba rohî û rewanî gehande xelkê welatê me. Her li vê rêyê ve jî hindî em bixwazin baştir û bêtir kakil û naveroka kevnarperwerane û azadîkujane ya xwe bi cîhanê da nasandin. Wiha di sala rabihorî de, di warê berhevdana siyasî de pileyeke bilinde agahî û di orta xebat û berxwedaniyê de netirsî û cesûriyeke zaf ji xwe nîşan da. Bi hişyarî û agahiyan ve hemû şik û gumanek li warê cih girtina guhertinan di çarçoveya Komara Îslamî de we ji xwe dûr xist û bi cesûrî ve refa xwe ji deshilatên hakim li tewahiya xwe da cuda kir.

Di pêvajoya rêxistina şanoya hilbijartina Meclîsa 7'an de girûp û taqimên nava deshilatê soz û qirar, gef û mef, zêr û zor, riya û tezvîr û hemû emrazek bi kar anîn, heta ku we xelkê hişyare Îranê ji rê derêxin û bo aliyê sindoqên hilbijartinê pal bidin. Lê we bi van û bi dinyayê nîşan da ku agahtir ji vêne ku bihên xapandin û netirstir ji vêne ku bi çokda bên. Aqibet eva bû ku şanoya hilbijartinê bi kesadî û sarî dest pê kir û bi şermezarî dawî pê hat. Qata here paşverûye nav deshilatê xwe di hilbijartina gera heftemîn de bi serkevtî dizanin. Di halekê de dinya şahidiyê dide ku xelkê Îranê bi cuda kirina refên xwe ji tevahiya girûpên nava deshilatê derba here mezin û bijan ji kelûşê Komara Îsalmî dane û hemû perdeyeke riya û tezvîrê li ser rûmetê qirêj û mirar û dijî miroviye wê rejîmê vêde daye. Hezaran silav û aferîn bo wê agahî û hişyariyê.

Di bin sîbera vê helwesta hişyar û hevgirtî de ye ku evro Komara Îsalmî di asta navneteweyî de weke heye hatiye nas kirin û xelkê dinyayê, wek rejîmeke ber bi neman û hiloşînê mêze dikin. Her lewma ye ku cîhaniyan çav bo altirnatîva Komara Îsalmî digêrin û ketine hizr û cehda rêxistina pêwendiyên xwe tev nonerên rastîne xelkê Îranê û pêşeroja van pêwendiyane di warên siyasî, dîplomasî, aborî û warên din de. Niha êdî kes cehdê naket di nava rêberên Komara Îsalmî de keseke piragmatîk û rast mêze û guhartinxwaz peyda biket. Hemûyan fêm kirine ev nîzame di tevahiya xwe de nîzameke paşverû û bi dijî pîvanên vî serdemî ye û li mêj e her wek ciwanên pêgihîştiye welatê me dibêjin: ***"Tarîxa mesrefa wê bi ser çûye"***.

## Xelkê Îranê bi cuda kirina refên xwe ji hemû girûpên nava deshilatê derba here mezin û bijan ji kelûşê Komara Îsalmî dane û hemû perdeyeke riya û tezvîrê li ser rûmetê qirêj û mirar û dijî miroviye wê rejîmê vêde daye. Hezaran silav û aferîn bo vê agahî û hişyariyê

Em di dawiya rojên sala 1382'ê de ne û roja şemiyê pê davêjine saleke nû ji jiyana siruştî û siyasî û civakî û xebatkaraneye xwe. Seba vê yekê ez iznê dixwazim ji aliyê xwe û endamên Deftera Siyasî û Komîteya Navendî û gişt şoreşvanên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve pîrozbahiya herî germ pêşkêşî hemû Îraniyan li hundir û derveyî Îranê, civatên neteweya Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê û gişt hogirên Newroz û bihar û nû bûnê li seranserê cîhanê de bikim û bo hemûyan di jiyana suriştî da serbilindiyê û di jiyana xebatkarane de serkevtinê bi hêvî bixwazim. Hêviya min û hevçeperên min û gişt evîndarên azadî û demokrasiyê eve ye ku nû bûna sala Koçî a Rojî û hatina Newroza pîroz destpêka xezan û verîna pelkên temenê dîktatorî û kevnarperwerî di welatê xweştiviye me û di hemû Rojhilata Navîn û di seranserê cîhanê de be.

*Gelên bişerefe Îranê!*

Em tev yekem tîrojka roja Newrozê de şewq û pirîşqa hêvî û xweziyê dibînin, di yekemîn çîke çîka bilbilên biharan û hajêna ava çem û cokan de sirûda azadiyê ber guhê me dikeve û tev bêhna sûsin û beybûnên biharî ên ev sal de, em bêhna serbestî û azadiyê dikin. Xebata xelkê me bo azadiyê ketiye qonaxeke nû, qonaxa hişyarî û barçav ronî, qonaxa vereviyana tem û mij û gumanê, qonaxa ji hev kirina dost û dijminan û qonaxa hevgirtin û pişt bi hevdanê ye. Ev qonaxe ji cehd û têkoşîna azadîxwaziya me bala hemû kom û komeleyên cîhanê bo aliyê xwe rakêşa ye û gişt hogirên azadî û demokrasiyê bi çavê hêvî û hurmet û aferînê lê dinêrin. Egîdî û netirsî û micitî û sor bûn û her di vê demê de jî berxwedaniya rêvîngên rêya rizgariyê di Îranê de bûye cihê piştîvaniya hemû ev hêz û girûp û aliyên dilê van bo azadiyê lê didet. Em pêşerojeke ron û geş li ber pê û li ser rêya azadîxwazên welatê xwe mêze dikin.

Îsal em di zirûfekê de bi pêşwaziya Newroz û sala nû diçin ku Rojhilata Navîn ketiye nava guhertineke nû, pêvajoya hiloşîna



**Doma rûpelê 2:**

## Peyama Newrozî a Sekreterê Giştiye PDK Îranê, birêz Ebdula Hesenzade

dîktatoriyan û şil bûna qeyd û zincîra dîliyê ji dest û pêyê gelên vê herêmê her sal û her mehekê gaveke taze bo pêşve hildigire û hemû rojê tîrojkeke nû ve hêvî bi serkevtin berçavê rêvîngên rêya azadiyê ronahî diket. Şine bayê azadiyê di herêma me de hil bûye û ewên dergeh û pencerên xwe li ser vî şine bayî girê didin (ku bêşik Komara Îsalmî yek ji van e) yan di nava bêhna genî û kevnarperweriyê de dê bixendiqin yan jî bayê hênike azadiyê ji van re dê bibe babelîsk û koşka dîktatoriyê bi ser van de dê bihiloşîne. Her eva maye azadîxwazên Îranê gavên xwe rêk bixin, li ser armancên hevpar bi hev bigehin û xwe tev zirûfa taze rêk bêxin.

***Xelkê xebatkarê Kurdistanê!***

Xebata hişyaraneya we û netirsî û bêwestiyane xortên we li pêş çavê xelkê Îranê û deverê û heta gelên azadîxwaze dinyayê jî veşartî nine. Ev micitî û berdewamiye zêdebarê van hemû dilreşî û tepeseriya bi dijî we tê bi kar birin, rêz û hurmet û bala cîhaniyan bo aliyê xwe rakêşa ye. Bîr û ramana giştî a cîhanê û kom û civatên siyasî û heta navendên biryardanê jî evro ji hemû çaxekê zêdetir bi baldan û bi çavê piştîvanî ve mêzeyî xebata neteweya Kurd di pêxema daxwaz û xwestikên berheqe wî gelî dikin. Heke heta çend salan berî niha pirsa Kurd tenê di vê yan ew parçê Kurdistanê de, ew jî wek paşbend û hinek pirsên mezintir dikete ber bala kom û civatên navneteweyî, evro ev pirse wek yek ji pirsên here giringe Rojhilata Navîn bo hemûyan naskirî ye û hemû aliyekê fêm kirine ku dibe çareseriya pirsgirêka Kurd ku pêwendî bi qedera dehan milyon kes ji xelkê vê deverê ve heye, Rojhilata Navîn nikare aştî û tenahî û rihetiyê bi xwe ve bibîne. Cihê kêyfxweşiyê ye ku her niha em dibînin xelkê Kurdistana Îraqê di encama cehd û têkoşîna dehan saliye xwe û bi piştîvaniya hêzên rastbîn û azad hizre Îraqî û deshilata demî a hevalbendan bi pareke girîng ji maf û azadiyên berheqe xwe gihîştine.

Qanûna birêveberiya dewleta Îraqê bo *qonaxa veguhastinê* ku roja 8'ê Marcha 2004'an, hemberî 18'ê Reşemeya 1382'ê ji hêla civata deshilata Îraqê ve hate îmza kirin û bi heq bûye hegera kêyfxweşî û şahiya hemû Kurdekê, bixasmanî di Kurdistana Îranê de bi awayeke bê mînak pêşwazî jê hate kirin ku pişta dijminên serbilindiya gelê Kurd hejand, dibe wek destkevteke girîng ne tenê her bo Kurdên Îraqê, belku bo hemû Îraqiyan û bo Kurdên hemû parçeyên Kurdistanê û bo hemû gelên maf lê zevt kiriye deverê bihê hesibandin. Ev qonûne ku

**Îsal em di zirûfekê de bi pêşwaziya Newroz û sala nû diçin ku Rojhilata Navîn ketiye nava guhertineke nû, pêvajoya hiloşîna dîktatoriyan û şil bûna qeyd û zincîra dîliyê ji dest û pêyê gelên vê herêmê her sal û her mehekê gaveke taze bo pêşve hildigire û hemû rojê tîrojkeke nû ve hêvî bi serkevtin berçavê rêvîngên rêya azadiyê ronahî dike**

nonerên Kurd di civata hukim da nexş û rolê berçav li darêtin û pejirandina wê de hebûn, bingeheke mukûm bo jiyana birayane û mafê wekheve hemû netewe û kêmaniyên neteweyî û girûpên cuda cuda ên pêk hênerên civaka Îraqê damezirandin û mînakek baş bo çareseriya pirsa neteweyî û yekîtiya dilxweze xelkê welatên çend neteweyiye devera Rojhilata Navîn da dest.

Dijminên azadî û bextiyariya bihevre jiyana dostane û birayane a gelan di herêmê de û di refa pêşdeye van Komara Îsalmî a Îranê cehdeke zaf kirin di berahiya pejirandina vê qanûnê asteng û arîşeyan pêk bînin. Lê bi xweşî ve têgihîştina kûr û berfirehe berpirsan di civata deshilatdar a Îraqê de û helwesta hevgirtî û bizava çalakaneye endamên Kurd ên civatê û alîkarî û pişt qahîmiya deshilata demî a hevalbendan hemû ev cehdene pûç kirin û qanûn hate pejirandin. Nehez û neyerên vê qanûnê wisan didin kifşê ku renge ev yasaye civaka Îraqê par par kirî ye. Di demekê de rast berevajî, pejirandina vê qanûnê yekîtiya Îraqiyan zaf ji caran mukûmtir kiriye û eva ku par û dabeş bûye, deshilata Îraqiyan e ku mafê hemû Îraqiyan e û her dibe bi ser hemû Îraqiyan de bihê parve kirin. Eva zemanet û girentiyeke bo evê ku çi deste û girûpek di wî welatî de xwe bi biyanî û bi hevwelatiyê derece duyem nezane û hemû bi hevre bo pêşxistina welatê xwe kar bikin.

Em di demekê de vê serkevtinê ji hemû Îraqiyan nemaze xwuşk û birayên Kurde xwe pîroz dikin û di halekê de aferînê bo hişyarî û hevpêvendiya civatên xelkê Kurdistana Îranê dişînin, hêvîxwazin kakila wê qanûnê di Îraqê de bi zûyî û bi hûrî bihê peya kirin, di pêşerojê de kêmasî bihên ji nav birin û bo heta heta newekhevî û zulim û zor di vî welatî de bihê bin bir kirin. Her di vê demê de em hêvîdar in federalîze bûna Îraqê bibe mînakek bo çareseriya pirsa neteweyî li welatê çend neteweyiye me de û bi fermî nas kirina mafê wekheve hemû gelên Îranê, hem bêpariya piraniya akinciyên Îranê, Azerbaycanî û Kurd û Belûç û Turkeman û Ereban dawî pê bihê û hem dengê nesaze boxtana cudaxweziyê bo her tim li gevriya şovînîstan de bihê kip û mit kirin.

***Îraniyên bi şeref û azadîxwaz, Kurdên têkoşer û welatparêz!***

Di bere berê cejna Newrozê de ez silavan ji canê paqije şehîdên destê zordarî û ji xebat û berxwedaniya hemû rêvîngên rêya azadî û demokrasiyê dikim, destê şêre Jinan û mêr maqulên şoreşvane vê rêya pîroz digiviş im, silavan ji berxwedana girtiyên siyasî dikim û ji dûr ve qelafeta keç û xortên xebatkare Kurd li himbêz digirim.

Carek din cejna Newrozê pîroz û hemû rojên we Newroz

Gavên we mukûmtir, îrade û baweriya we qahîmtir û berxwedana şoreşvaniya we dirêjtir, bi hêviya Newroza rizgarî û cejna serkevtin û serbilindiyê

**Ebdula Hesenzade**
**29'ê Reşemeya 1382**

# Hilbijartinên Meclîsa 7'ê

-------------------------
Mihemed Salih Qadirî

Di hilbijartina serkomariyê li 2'ê Cozerdana sala 1997'an de xelkê Îranê seba nerazî bûna berfirehe xwe ji vê rejîmê, bi berevajiya xwasta Welayeta Feqîh kesê dilxwaze wî ji serkomariyê re hilnebijartin û bo vê yekê ku ***Ne***'yeke mezin gotibine deshilatdariya dasepayî, berendamê duyem ku Xatemî bû, wek serkomar hilbijartin. Lewma em dibêjin ku hilbijartina Xatemî bi serkomariyê berhema bizava bi lome û dijberiya xelkê tev Welayeta Feqîh bû, ne eva ku navbirî mirovekî jêhatî û afirînerê (xulqînerê) vê encamê be, lê navbirî bi wan qewl û sozên ku didane xelkê û cîhana derve û hinek dirûşmên wek: "***got û bêjên bajêrvanî***" û "***Îran ji tewaya Îraniyan re***" û . . . şiyabû heya radeyekê bala hinek xelkê li navxwe û derve bo aliyê xwe rakêşe û cure tirsekê cem wan pêk bîne û heya radeyekê pêlên nerazî bûna xelkê li hember rejîmê bitemirîne. Ji vê kanalê ve bû ku Xatemî karî ji aliyekê ve bîr û raya giştî a derve bixapîne û ji aliyekê din ve di bin deshilatdariya vî de, pêla girtin, zîndanî kirin, bê ser û şûn bûn û kuştinên rêzokî (qetlihayê zencîreyî) û . . . dirêjî hebin û celadên hakim bi ser welat da pakane hesabê tev azdîxwaz û rewşenbîrên welatê me bikin.

Xatemî wisa nîşan dida ku heke piraniya nonerên parlemanê ser bi baskê wî bin, wê bikare qewl û sozên xwe cî bi cî bike û li jiyana siyasî-civakî û aboriya xelkê de guherînan pêk bîne, lê me dît piştî vê ku hilbijartina parlemana 6'ê bi rêve çû û piraniya nonerên vê parlemanê jî ji baskê reformxwaz hatin hilbijartin. Ev parlemana bi Xatemî ve li çar salên temenê xwe de ne tenê her nekarî bi qazancê xelkê û welat çi guhertineke girîng bi cî bigehîne, belku şiyana berevanî kirin ji endamên xwe jî çi nebû, û di rastî de bê îradeyî û ser çevandina bi eşkere a wan li hember Welayeta Feqîh û Şêwra Nobedar de ji tevaya xelkê Îranê û cîhanê re derket.

Encama vê zirufê bûye eva ku hukûmeta Xatemî û parlemana bi nav reformîst bibe dirêjiya destengî, destpîsî, bêşolî û giranî, bê hêvî bûna xelkê bi pêşerojê, helatina mejiyan ji welat, girtina azadîxwazan û îşkence û îdam kirina wan, bê ser û şûn kirin û li encam de jî kuştinên rêzokî û pêk anîna neeminiyê di jiyana rojane a xelkê de.

Li radeya derve de jî bo me hemûyan eşkere ye ku ev rejîme seba siyasetên qirêje xwe çende bi tenê ma ye, wek rejîmeke bin pê kerê mafên mirovan û pêwane û rê û cihên navneteweyî nas kiriye û seba çêkirina çekên tevkuj û piştevanî kirin ji terorîzmê ketiye tewera (mêhwera) şerotiyê de, û cî pêyekî wisa jê re nema ye.

Hilbijartina Parlemana 7'ê serbarê wan aloziyên navxweyî û derveyî ku li serê de hatine bas kirin, li zirûfekê de hate girtin, ku ji aliyê rêberê nîzamê û Şêwra Nobedar ve xwe amade kirin û rê û cihên tund û qahîm bi merema pêşgîrî ji beşdariya reformxwazan birêve çû, ku li encama wê de Şêwra Nobedar kêrhatî bûna (selahiyeta) nêzîkî 3000 kesan ji berbijarên reformxwaz ret kir, li encama vê ret kirinê de her wek me dît serbarê girev girtina dehan kes ji nonerên parlemanê û hewla bê encame serkomar Xatemî û serokê parlemanê, ne rêber û ne Şêwra Nobedar kêmtirîn pêdaçûn jî bi ser karê Şêwra Nobedar de nekirin. Ji aliyekî din ve xelkê Îranê jî çi hêviyek bi vê rejîmê li tewahiya wê de nemabû, îca çi bigihîje vê yekê ku bi hebûna çend Reformxwazan di parlemanê de dilê wan xweş be, wan dizanî heke her hemû nonerên ser bi Reformxwazan careke din biçin bo parlemanê, dîsan jî li hemberî rêberê nîzamê û Şêwra Nobedar de nikarin daxwaza xwa ya herî kêm destve bînin, ji aliyekî din ve jî wan re cihê pirsyarê bû ku başe bo çi dema ku ret kirina terhê pêşniyar kirî a girêdayî bi yasaya çapemeniyê û çend tiştên din ji aliyê Şêwra Nobedar û rêber ve dihatine ret kirin nonerên parlemanê girev negirtin? Lê niha ku kêrhatî bûna wan hatiye ret kirin piştî wê girev girtinê, her lewma çi piştevaniyek ji nonerên girev girtî ên bi nav reformxwaz nekirin.

Piştî wê me dît ev nonerên bi nav reformxwaz ku carê kêrhatî bûna wan nehatibû ret kirin jî, her ku zanîn xelk tev wan nine, nêzîkî 1180 kesên wan xwe ji berbijariya Meclîsa 7'ê paşderv kirin û li ser şolê (kar) vêde çûn, piştî vê rewşê panav ji berbijarên qorixçî re wekirî bû û tenê ew di panava hilbijartinê de man û bi hemû îmkanateke teblîxatî daxwaz ji xelkê dikirin ku beşdariyê di hilbijartinê de bikin. Wan bo rakêşana xelkê bo ser sindoqên dengdanê, ji tomar kirin, gef kirin, têkder û pêk anîna kêberkê (pêşbirkê) ên tayifayî û heta layî kirina rêber ji xelkê ve bigire heya dengoya çend milyon pênaseyên destçêkirî û . . . çi ji destê wan hat kirin.

Lê bi xweşî ve me dît ku xelkê têgihiştiye Îranê ku wan re eyan bûye ku di bin deshilatdariya Welayeta Mutleqeya Feqîh de bandora herî biçûk li muqedera xwe de çinabin û ji mafên herî destpêkî ên xwe bêpar dibin, tevî gaziya piraniya hêzên azadîxwaz ên Îranî li hundir û derve, biryar dan ku di vê şanoya hilbijartinê de beşdariyê nekin û bi vê helwesta xwe deshilatdarên rejîmê têbigehînin ku nîzama wan li tewawetiya xwe de çi rewa û berheqiyek (meşruîyetek) nemaye. Bo vê meremê li kelekela teblîxatê de ji aliyê xelkê ve dirûşmeke wek ***"beşdarî kirin li rê û resma hilbijartinê de, beşdarî kirin li rê û resma gor bi gor kirina demokrasiyê ye"*** hatibû berhev kirin ku gelek jî balkêş û bibandor bû. Ji bo selmandina vê rastiya ku li serê de me îşare pê kir, bi pişt qahîm bûna bi deqê wan serhijmêriyên fermî ku navendên yasayî ên rejîmê belav kirine em dikarin radeya hatine xwar a rêjeya beşdariya xelkê Îranê bi giştî û bajarên mezin bi taybetî di hilbijartina gera 7'an a Meclîsê de bi berawird (dane berhev) a tev rêjeya beşdarî kirina wan di hilbijartina Meclîsa 6'ê de bi vî awayî bêxine ber çavê xwendewanan:

di hilbijartina gera 6'ê de koma wan kesên ku mafê dengdanê hebûne %69,23'ê bi awayeke navincî li seranserê Îranê de beşdarî di hilbijartinê de kirine, lê di hilbijartina gera 7'ê de ev rêjeye bo %51,5 hatiye xwarê. Li bajarên mezin ên Îranê de ev hatine xware bi daneberheva tevî hilbijartina gera 6'ê bi vî awayî bûye: Tewrêz ji %54,22 an bûye %31,79 Îsfehan ji %47,45 an bûye %32,19, Meşhed ji %62 , %79 an bûye %47,28, Şîraz ji %48, 82 an bûye %31.86, Qom ji %70, 39 an bûye %54,89, Ehwaz ji %53,37 an bûye %41,66, Kirmaşan ji %63,39 an bûye %35,95, Urmiye ji %58,81 bûye %36,06 û li encam de Sine ji %62,39 bo %29, 32 an hetiye xwarê.

Bi vî awayî hemû aliyekê re derdikeve ku xelkê Îranê bi vê helwesta dîrokî a xwe li vê hilbijartina nimayişî de ev rejîme ji her demekê zêdetir perîşe kirî ye û bi tenê hêla ye. Lê çavkaniyên ne dewletî vê serhijmêriyê bi serrast

→

## Doma rûpelê 4'ê: Hilbijartiên Meclîsa 7'ê

nizanin û navinciya beşdar bûyiyan li seranserê Îranê de kêmtir ji %30 an didanên û ji vê dersedê jî %15 ji xelkê dengê sipî avêtibûne sindoqan. Lêre de derdikeve ku merema rejîmê ji vê serhijmêr çêkirinê eve ye ku li cîhana derve û li hundir de wisa nîşan bide ku serbarê ret kirina kêrhatîyan û dijberiya Reformxwazan û Opozisyonê, xelk ber bi pêşwaziya wan ve çûn, bo vê yekê ku rewa û berheqiya xwe nîşan bidin. Bi vî awayî encama hilbijartinê her wek pêştir ji aliyê rêberê nîzamê û Şêwra Nobedar ve hatibû dîharî kirin eva bû ku piraniya nonerên qorixçî li Meclîsa 7ê de serê xwe derêxin û bi qewlê xwe çepera xebat dijberî şoreş û Amerîkayê ji destê sebebkarên biyanî rizgar bikin.

Ya ecêb û cihê heyrîmanê eve ye ku di demekê de basa serkevtina xwe û destve anîna piraniya korsiyên Meclîsê dikin ku serbarê tewaya firt û fêlan ku li hilbijartinê de kirin tenê kêmaniyekî biçûk ji xelkê Îranê, ev jî ew karmend û mizwergirên ku yan ji tirs, yan jî seba birsîtiyê beşdarî di hilbijartinê de kirin. Di vê hilbijartinê de pişkeke berçav ji wan tenê dengê sipî avêtibûne sindoqan de, û bi vî awayî xelkê Îranê bi beşdarî nekirin di hilbijartinê de qedera xwe ji vê rejêmê cuda kirin û cîhana derve jî pê hesandin ku vê rejîmê çi hitbarek nemaye û êdî ew nikarin li ser hisaba xelkê Îranê pêwendiyên xwe tev vê rejîma bê hitbar damezrînin . Erê gelo abirû çûn û rûreşî ji vê yekê mezintir bo rejîma axundî dibe çi be ku şîretan jê werbigrin û bizanin ku dihola wan hatiye lêdan û dengê wan nemaye.

Ev hilbijartine tevî wan hemû aliyên ku îşare pê hate kirin aliyeke dinêye wê jî eva bû ku bo hundirê welat û cîhana derve eşkere kir ku heya wê demê ku çavkaniya deshelatê di vê rejîmê de li ser bingeha Wilayeta Feqih be , êdî deng û îradeya xelkê çi bihagiraniyek çinine û hêvîdar bûn bi guherînên siyasî, civakî û aborî ji vê rejîmê ve çi wateyek çinine. Ji ber ku rêber xwe li hember xelkê de bi bersivder nizane û tenê bi Xudê re teref e. Ji bilî vê yekê vê hilbijartinê karî refa neyarên rejîmê û bîr û raya giştî heya radeyek li hember Komara Îslamî de yekdest û mewdaya li navbera xelkê û rejîmê çend hindey din zêdetir bike û li rastî de rûpelek nû ji xebat di navbera xelkê û qorixçiyên hakim bi ser welat de weket.

Her çend ku rêberên rejîmê gelek hewil dan da ku li radeya derve û navxwe de hitbarekê ji vê hilbijartina nimayişî peyda bikin, lê belê hem Ewropa û hem jî Amerîka ev hilbijartine bi ne demokratîk zanîn û lome û gazindeyên tund ji rejîmê girtin ku bê şik û guman ev helweste dikare li pêşerojê de ji lome kirinê derbas be û kiryara raste rast bi dijî vê rejîmê bi xwe ve bigire û bibe piştîwaneyeke xwedî hêz ji bo bizava demokrasîxwazî a gelên Îranê.

Renge di vê navberê de ev pirsiyare bihê holê Ku erê gelo pêşeroja Meclîsa 7'ê û kiryarên wê dê çavan û çende li xizmeta xelkê Îranê de be? Bo bersiva vê pirsyarê her hinde bes e ku em wê beşê ji axavtinên Refsencanî li yekemîn Xutbeya Nimêja înê a piştî hilbijartinê bi bîr bînin ku got: "Ewên ku beşdarî li hilbijartinê de kirin şoreşvan û ewên beşdarî nekirin dijberî şoreşê ne". wateya vê gotinê eva ye ku ji niha ve



Wêne: www.dengekurd.com

Fitwaya her terze zext û givaş û girtina azadîxwezan û bi taybet ewên ku berbijariya xwe wergirtine hatiye dan û dibe em li benda pakane hîsaba qorixçiyan tev vê parê ji civaka welatê xwe bin.

Lêre de hewce ye ku em îşareyeke kurt bi helwesta xelkê Kurdistanê derheq vê hilbijartinê bikin ku li gorî serhijmêran li radeya Îranê de ku rêjeya beşdarî kirina wan herî kêm di hilbijartinê de bûye. Ew xelkê ku bi dirêjahiya temenê Komara Îslamî berdewam bi awayên cur bi cur di bin her terze zilm û zorî û pilanên dijminkarane a vê rejîmê de nalandine, serbarê serneçemandina xwe li hember vê rejîmê de rêya berêkanî tev vê rejîmê girtine pêş û li awayên cur bi cur û bê rawestan dijberî vê rejîmê xebat kirin e . kopka wê helwestê û xebata wan serbarê beşdarî li refa tevgera neteweyî demokratîk a Kurdistanê bi rêveberiya PDK Îranê li 25 salên rabihorî de, vê carê li hilbijartina gera 7'ê a Meclîsê de xwe nîşan da. Ew xelkê nevest û serwext(hişyar) tevî vê ku bi gaziya PDK Îranê ev şanoya hilbijartinê baykot kir, karîn vê baykotê bikin çepera îradeya neteweyî û hevgirtina hindî zêdetir li hember vê rejîma zordar û bi vê karê xwe misteke tund li ser devê vê rejîmê bidin.

Di piraniya bajar û bajork û gundên Kurdistanê de ji bilî kesên bi kirêgirtî û mizwergir ên dewletê nebe, xelkê pêşwazî ji daxwaza rejîmê bo pişikdarî li helbijartinê de nekirin û heta di çend gund û bajaran de êrîş kirine ser berpirsên dîharî kirî ên rejîmê û sitadên teblîxatî ên wan û li bajarê Merîwanê, Bokan û Sine de kar gihîşte şer û lêkdaneke tund li nevbera xelkê û bi kirêgirtiyên rejîmê de.

Lêre de bi anîna wan serhijmêriyên jêrîn em dikarin radeya başdarî kirina xelkê Kurdistanê di vê hilbijartinê de binirxînin ku li radeya Îranê de pişikdariyeke gelek kêm kirine. Li Urmiyê %36,06 pişikdarî di hilbijartinê de kirine ku ji vê rêjeyê zêdetir ji %15 an dengê sipî avêtibûne sindoqan. Ewa jî di halekê de ye ku akinciyên vî bajarî ji kurd û Azeriyan pêk hatine. Li bajarê Kirmaşanê tevî tekez kirina rejîmê bo haydana hesta olî a Şîiyan wan tenê %35,95 pişikdarî kirine ku ji vê rejeyê jî pişkek zaf ji xelkê dengê sipî dabûn. Navincîa pişikdariya gişt bajarên parêzgeha Kurdistanê jî %32,6 bû ku ji vê rêjeyê jî %13,7 dengê sipî dabûn.

Bi nirxandina wan serhijmêriyan ji me re eyan dibe ku xelkê Kurdistanê gelek baş kakila vê rejîmê naskirine û her lewma bi pêşwazî kirin ji gaziya PDK Îranê ev hilbijartina li tewawetiya xwe de baykot û tehrîm kirin û bi vê karê xwe yekrefî û piştevaniya bi eşkereye xwe ji PDK Îranê eyan kirin. Her lewma piştî hilbijartinê, DS a PDK Îranê bi nîşaneya pêzanîn û rêz û hurmet girtin ji vê pêşwaziya xelkê ji gaziya PDK Îranê di daxuyaniyekê de sipasa xwe pêşkêşî xelkê Kurdistanê kir ku bi hişyarî û yekdengî ve misteke tund li nav devê rejîmê dan û bi dirûşmên bê kakile wan nehatne xapandin.

# Komara Îslamî di sala rabihorî de, bo aliyê serlêjiya nemanê gav hilgirt

Erfan Rehnimûn

*Komara Îslamî a Îranê di sala rabihorî de tevî zaf qeyran û aloziyên cur bi cur berengar bû, bi awayekê ku em dikarin bibêjin kûrî û zeq bûna wan qeyran û aloziya di heyamê 25 salên deshilata reşe Komara Îslamî de bê mînak bû ye. Bi awayeke giştî em dikarin wan pirsgirêk û aloziyane di astên navxweyî, deverî û navneteweyî de polîn bikin û cehdê dikin bi awayeke kurt bêxne ber bas.*

## Qeyranên navxweyî:

Komara Îslamî a Îranê di sala derbas bûyî de, li hemû warên civakî, siyasî, aborî, çandî, bi zaf qeyranên ne çareserkirî berengar bûye, ew pirsgirêkene bi awayeke rasterast bo esliyet û kakila Komara Îslamî di dîroka serhildana van hevdem digel ava bûna Komara Îslamî daye ku roj bo rojê û sal bo salê bo aliyê zêde bûn û tîr bûnê çûne. Zaf pirsgirêkên weke, genîtiya îdarî, malî, lewazî û bê hêziya sîstema rêveberî, îtiyad, xemukî, leşfiroşî, zarokên bê serperest ên ser kûçe û kulanan, keçên şeqaman, giranî, awsana aborî, qaçax, bandên bazirganî bi zarokan ve, telaq, ji ber hev hiloşîna malbatê, dizî, bezandina tuxîbê azadiyên kesî, îdam, îşkence, kevir baran, birîna endamên leşê mirovan, girêdana rojnameyên serbixwe û nîve serbixwe, girtin û hepsî kirina rojnamevanên netirs û bivêr, şoreşvanên siyasî û cuda hizir û dehan û sedan mijar û mînakên qirêj û mirare din.

Lê, bûyerên siyasî ên girîng, berçav û bandordar di heyamê sala derbas bûyî de pêkhatî ne ji:

1- Xwepêşandan û girev girtina xwendekaran, bi dijî Komara Îslamî li meha Juenê de ku bi leziyeke balkêş piraniya Zanîngehên Îranê dagirt û di heyamê çend rojan de bûne sernavê nûçeyên girînge cîhanê û di jêderên giştî ên cîhanê de bi awayeke bêmînak reng vedan. Ev xwepêşandane bi derbas bûn ji Komara Îslamî hatin li navkirin.

2- Xurt û geş kirina bas, nîqaş û diyalog di nevbera aliyên opozisyonên Komara Îslamî û pêçeqandin li ser gehiştin bi pilatformeke hevpişk bi merema hiloşandina Komara Îslamî û anîne ser karê rejîmeke demokratîk û gelî ku bikare mafê hemû pêkhateyên cuda cudaye civatgeha Îranê misoger bike.

3- Hevdîtin û cehd kirina zêdetir a opizosyonên Kurdiye Komara Îslamî, bi merema gihîştin bi Pilatformekî hevpişk û li ser hev kom kirina hêz û şiyanan bo berêkaniyeke micittir bi rijîmê re û misoger bûna mafên berheqe gelê kurd di nîzameke demokratîk û azad de.

4- Dirêjiya siyaseta tepeseriya bê rehmaneya gelê Kurd li Kurdistana Îranê û şehîd bûna du şoreşvanên PDK Îranê, hevalan kekê Hejar Rizayî û Şemsedîn Rostemî, bi destê kirêgirtên rejîmê û îdama du xebatkarên bi xîrete PDK Îranê û gel, hevalan kak Celîl Zêveyî û Ramîn Şerîfî di hepsên reşe Komara xwîn û cinayetê de.

5- Germ û gur bûna zêdetire xebata neteweyî a gelên bindeste Îranê (Belûç, Azerî,, Ereb û Turkmen) û tund û tîj bûna wê û siyaseta şovînîstaneye rejîmê bi dijî mafên berheqe wan xelkên bê maf li Îranê de.

6- Wergirtina Xelatê Nobel a Aştiyê ji aliyê *Şîrîn Ebadî* ve, weke yekem jina misilman ku ev xelate bi hegera piştivanî kirina nevbirî ji mafê zevt kiriye jinan û zarokan di Îrana Îslamî de pê hatiye dan.

7- Birêve çûna hilbijartinên gera duyem a Şêwrên Bajar û Gundan û xwe parastina berçav û watedare civatên xelkê ji çûn bo ser sindoqên dengdanê wek yekem *Ne'*ya xelkê bi baskê bi nav guhartinxwaze rejîmê.

8- Tehrîm û baykot kirina berfirehe hilbijartina Maclîsa heftem ji hêla opozisyonên Komara Îslamî û gişt gelên Îranê û tomar bûna serbilindiyeke din bo gelê Kurd, bi hegera qasa here kême pişikdarî kirin di wan hilbijartinane de bi berhevdan tevî deverên din ên Îranê.

9- Teqînên xwekuje Hewlêrê li buroyên PDK û UNK'ê û birêve çûna kora serxewşî û behîtiyê seba vê bûyera neteweyî di piraniya bajarên Kurdistana Îranê de.

10- Gehiştina gelê Kurd li Kurdistana Îraqê bi qaseke berçav ji mafên xwe û ketine rêya pêla hevpêwendiya gelê kurd li Kurdistana Îranê bi hevwelatiyên Kurde xwe li Kurdistana Îraqê re û tepeseriya hovaneya wan xwepêşandanane û girtina sedan lawên bi seh û welatparêz bi sûçê kêyfxweşî û şa bûna wan bi rizgar bûna parçeyek ji nîştimana Kurdan.

11- Hiloşîna yekcariya stûnên berheqiya Komara Îslamî di bîr û hizra giştî de û verewyana tevehuma danana ferq û cudahiya gevherî li nav bask û taqimên nav deshelata Komara Îslamî de.

12- Ret kirin û ne pejrandina gelaleyên qedexe bûna îşkencê û vêde birina ferq û cudahî danan bi dijî jinan ji aliyê Şêwra Nobedar.

13- Danana fîltêran li ser malperên înternêtî ên siyasî û şêlû kirina (hinartina parazêtan) torên esmanî ên Farsî ziman li derveyî welat bi alîkariya rejîma dîktatoriya Koba û şermezar bûna vê rejîmê di vê derheqê de.

14-Domandina kuştina xelkê bêberevan û bê gunehe Kurdistanê ji aliyê hêzên rejîmê di rojên dawiya sala 1382'ê de.

## Qeyranên deverî:

Li dirêjahiya sala derbas bûyî, Komara Îslamî a Îranê di asta herêmî de tevî çend pirsgirêkên siyasî berengar bû, ku em dikarin bêjin ev qeyranane di berhevdan tevî 25 salên rabihorî de çi di warê çendayetî û çi di warê çawaniyê de bêmînak bûne. Girîngtirîn qeyranên herêmî ku rasterast bandor li ser Îranê danane û li pêşerojê de jî devs daner dibin, pêk hatîne ji:

**1- Qeyrana hevza Behra Xezer û Asiyaya Navîn.**

Rejîma Komara Îslamî li dirêjiya sala rabihorî da, nekarî vêc û qazancên Îranê di pêwendî tevî destnîşan kirina rejîma hiqûqî a Behra Xezerê de, biparêze. Îran ku Rûsiye bi hevpişkê xwe li devera Xezerê dizane, di hemberî siyaseta Rûsiyeyê de şikesteke tund û eşkereye siyasî îna û Rûsiyê karî piraniya welatên qeraxa Xezer bi vêc û qazancê xwe û bi zerera Îranê, ji hev nêzîk bike. Ji aliyê din ve, Dewletên Yekbûyiye Amerîka di sala rabihorî de karî li welatê Azerbaycanê nêzîk be û li pîşeya petrola wî welatî sermayeguzariyeke mezin û berfireh bike û pêgeha nizamiya xwe li Asiyaya Navîn bi giştî û li Azerbaycanê de bi taybetî, bihêz bike û bo lawaz kirina Îranê heta qasekê xwe bi Rûsiyê re hevdeng kir. Îranê di heyamê rabihorî de nekarî pêwendiya pozetîve siyasî-aborî bi welatên qeraxa Xezerê de damezrînîe.

Girîngiya stiratijiya wê Behrê di warê aborî-siyasî de, herêma

## Doma rûpelê 6'ê: Komara Îslamî di sala rabihorî de, bo aliyê serlêjiya nemanê gav hilgirt

Xezerê kiriye bi herêmeke milîtarîze û li pêk hatina hevkêşeya nû ya hêzê di herêmê de, Komara Îslamî ji hemû aliyan lawaz û bê dest û lep livlivî ye. Herweha şoreşa Mexmelî a Gurcistanê ku di sala rabihorî de serkevtin bi destve anî, karî ji hindek waran ve bandora siyasî li ser Îranê danê.

**2- Pejrandina qanûna bingehîn ya Efxanistanê ji aliyê Loyî Cergê ve.**

Pejrandina qanûna Efxanistanê, tirseke siyasî a dinê ye bo rejîma kevnarperwere Îranê di astê deverî da, çunku li Efxanistanê jî, hikûmeta Îslamî li ser şolê bû û ewê rejîmê xelkê Efxanistanê bo sedsalên tarî û notan zivirand bû. Lê hiloşîna rejîma Taliban - û pejrandina vê qanûnê (ku bi baldan bi kultur û dîroka wî welatî, gaveke bilind bû bo aliyê demokrasiyê) ev welate têkilî civatgeha şaristanî bû ye û niha sîstema siyasî a Efxanistanê di berhevdan tevî Komara Îslamî de, bi qasekê pêşkevtî û evroyî ye ku dikare - hekî em nebêjin zerfiyeta ewê heye ku bibe mînak bo xelkê Irene - bandora berçav li ser xebata azadîxwazaneya xelkê Îranê bi dijî serberedayiya Olî danê.

**3-Hiloşandina rejîma Bees û bandorên sîstema demokratîk û Federalî a Îraqê li ser Îranê**

Em dikarin bi awayeke giştî bandora cihgir bûna Îraqeke demokratîk û Federal li ser Komara Îslamî ji van du xalên jêrî de, Kurt bikin:

1- Îraqa demokrat û Federal ku têde gelên Îraqê bi hemû pêk hatên cuda cuda ye wê bigihîjine mafên xwe dibe mînakek baş bo hemû gelên Îranê bi hemû pêkhatên wê ve. Çunku hem Îraq, welateke pir netewe û pir Olî ye, hem Îran. Ku waye guherîna sîstema nû û demokratîk di wî welatî de, dibe mînakek îdeal û ceribandî bo gelên Îranê bi hemû pêkhatên neteweyî û Olî ên wê ve.

2- Bi hiloşîna rejîma Sedam û wêde çûna tepeseriya Olî li ser Şîîên Îraqê, navendên ayînî ên wî welatî bo aliyê vejiyan û geşe kirinê diçin û li pêşerojê de, hevzeyên Kerbela û Necef dikarin cihê hevzên olî ên Meşhedê bigirin û "merceiyeta cîhana Teşeyuê", careke din bo hevzên aliyê Îraqê bizivirîne û çi din melayeke wek Xameneyî nikare bi hebûna çend merceên mezin û bihêz di Îraqê de îdiaya merceiyeta meenewiya Şîîên cîhanê bike.

Ji hêleke din ve, merceiyeta Îraqê li ser vê bawerê ye ku nabe "dawêna Ol bi siyasetê re bihê girêdan" û belav bûna vê ravê ji Îslamê, dibe hegera lawaz bûna têza ava kiriye "Welayeta Feqîh" ku îdeolojiya rejîmê ye û Komara Îslamî li ser vê bingehê hatiye ava kirin.



Karîkator ji Reuf Xetîbî

## Qeyranên navneteweyî:

Ew qeyranên aloze navneteweyî ku Komara Îslamî li heyamê sala rabihorî de bi van re berengar bû, hinde zafin ku em neçarin bi kurtî îşareyekê bi van bikin.

Qeyranên giringe navneteweyî ên Îranê di heyamê sala rabihorî de navbirî bûn ji:

1- Kirîs Patin, Komîserê pêwendiyên navneteweyî ên Ewropa li meha Februariyê de seredana Îranê kir û li ser wê pê çeqand ku îmza kirina rêkevtinnameya bazirganî û alîkariya Ewropa girêdayî bi baştir bûna rewşa mafên mirovan li Îranê û pêşveçûn di warê azadiyên siyasî û destberdan ji berhem anîna çekên komkuj û piştevanî ji terorîzmê ye.

2- Girûpek ji karnasên mafên mirovan ya Rêxistina Neteweyên Hevgirtî bi serokatiya "Luyî Jivane" di meha Februariyê de bi merema vekolîn ji girtinên needetî li Komara Îslamî seredana Îranê kir.

3- Wezareta Derve ya Amerîka di rapora salaneye xwe de ku di meha May de belav kir, dewleta Îranê wek piştîvanê mezine terorîzmê li cîhanê mehkûm û gunehbar kir.

4- Rêxistina Efûya navneteweyî di rapora salaneye xwe de ku di meha May de belav kir, bi awayeke berçav lome ji rewşa mafên mirovan li Îranê girt û ragehand ku di sala bihorî de dehan kesayetiyên siyasî û cuda hizir li girtîgehê de hatine pestavtin û wê rêxistinê dezgeha qezayî a Îranê seba berbend kirina azadiya eyan kirinê û dirêjî dan bi birêvebirina hikmê îdamê gunehbar kir.

5- Rûyîs Lombirk, qaziyê dadgeha Federal ya Amerîka li hikmekê de Komara Îslamî bi berpirsyarê teqîna paygeha leşkerî ya Emerîka li sala 1988'ê li Beyrot a paytextê Lubnanê mehkûm kir.

6- Di meha Januariyê de, Xatûna Zehra Kazimî, nûçegihanê Kanadayî (bi regez Îranî) li hemberî hepsa Êvîna Tehranê hate girtin û piştî çend rojan di bin îşkencê de canê xwe ji dest da.

7- Hadî Silêmanpûr, balyozê berê ye Komara Îslamî li Arjantînê bi hikmê dadgeha Federal ya Arjantînê bi guneha pişikdar bûn li teqîna sala 1994'ê li navenda Cihûyan li Buynis Ayrisê de ji aliyê polîsê Îngilistanê ve hate girtin,.

8- Di meha Januariyê de, Manfirêd Vayidîngêr, parêzvanê Otrîşî yê perwenda terora Dr.Qasimlo û hevalên wî hate bê ser û şûn kirin û di meha Septemberê de li nêzîk bajarokekê meytê bêrihe wî hat peyda kirin. Ji ber vê ku wî parêzerî dijminatî bi çi kes û aliyekê re nebû ye, tiliya gunehbar kirinê bo aliyê Komara Îslamî tê dirêj kirin.

9- Di meha Decemberê de Civata Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bi pêşniyaza komîsyona sêyan a wê rêxistinê, Komara Îslamî bi goneha bin pê kirina berçave mafên mirovan mehkûm kir.

10- Qeyrana herî giring a komara Îslamî di sala rabihorî de, destgihîştin bi çekên komkuj û li serweyî hemûyan, teknolojî a leşkeriya çekên navokî bû.

Ev qeyrane heta piştî îmza kirina pertokola hevpêç ya zêde nekirina çeka navokî jî, tewaw nebû û Komara Îslamî piştî îmza kirina wê pertokolê jî, dest ji dewlemend kirina Oraniyomê ne kişand û di rojên dawiya sala 1382'e Rojî de jî, çiqên taze ji vê pirsê ketin û bi arxayînî ve dibe yek ji qeyranên herî giringe navneteweyî a komara Îslamî di sala 1383'ê de jî.

# Nirxandinek ji 25 sal deshilatdariya Komara Îslamî

**Sedî Ebdî**

Birêvebirên komara Îslamî îsal, di halekê de 25'mîn salvegera ava bûna hikûmeta dîktatorî ya xwe li ser gelên Îranê cejin digirin ku digel qeyranên gelek mezin yên navxweyî û derveyî, ji hemû aliyan re rû bi rû ye. Hemû kes îro vê pirsê dike: Rejîmek ku di rewşeke wisan de ye, dê çiqas bikare dewamê bîne û kengî kerpîça dawî ya dîwarên wê ji bo cara dawîn di dîroka gelên Îranê de wê bihê xwarê.

25 sal pêştir, dema ku ewan (meleyan) di Îranê de hêz û deshilat girtine destê xwe, paye û bingeha rejîma xwe li ser çend eslan damezrandin. Lê belê di pêk anîna wan de biser nekevtin.

Çaxê ku mirov li ser karnameya 25 sal hikimdariya rejîma Îslamî a Îranê lêkolînê dike, derdikeve ku hejmara here zor ya gelên Îranê (ji bilî wan kesên ku qazanca wan di berdewam bûna vê rejîmê da ye) hatine ser vê baweriyê ku komara Îslamî ne tenê di cî bi cî kirina van armancan de ku soz dabû bi ser neketiye, belkî sedî sed şikest xwariye, û di rastiyê de temenê rejîmê heta ser lêva gorê birî ye.

Melayan fikir dikirin ku dîn dê bikaribe û heta pêwîst e birêveberiya deshilatê bigire destê xwe. Lê di rastî de rejîmên olî di dirêjiya dîrokê de xwedî temenekî gelek kurt bûne û îro di dinyayê de çi rejîmên mezhebî hikimdariyê nakin. Heta rejîma malbata Wehabiyan li Erebistana Siûdî, her çend ku hinek yasayên olî bi teesobî tê de birêve diçin jî, lê her wisan ji zaf yasayên ne mezhebî jî hene ku hatine qebûl kirin û brêve diçin.

Sîstema "Welayeta Feqîh", ku "Xumêynî" bingeha rejîma Îslamiye xwe dizanî, di rastî de, ebayek e ku tenê ji bo bejin û bala rejîma olî ya Îranê hatiye dirûn.

Damezrênerê rejîmê û hevalbendên wî gelek cehd kirin ta ku ji rêya birina şoreşa Îslamî ji bo welatên dûr û nêzîk, hêviya 1400 salî ya Şîîan ji bo bi dest xistina deshilatê û damezrandina xelafeta Şîî cî bi cî bikin. Di çarçeveya vê hêviyê de bû ku rejîma Îranê bi xerc kirina diravekî zor xwast hemû girûpên terorîstî yên Îslamî û ne Îslamî, di bin navê (hereketên azadîxwaz) têxe bin nifûza xwe û di dawiyê de, bi alîkariya wan girûpan û bi awayên hundirî yên welatên Erebî û Îslamî de, rejîmên wan welatan ji nav bibe. Vê carê, hêrişa "Sedam Hussên" bo Îranê û şerê 8 salan di navbera Îran û Îraqê de di rastî de çarçoveya vê stiratijiyê de qewimî. Ji aliyê din ve karên teror û terorîstî bûne yek ji bingehên rejîma komara Îslamî.

Îro piştî 25 salan, rejîma Xumêynî, digel hemû hizr û hereketên xwe yên terorîstî û şerxwazî li hundir û derveyî welêt dijî gelên Îranê bi giştî û gelê Kurd bi taybtî, nekarî Tevgera azadîxwaziyê li Îranê ji nav bibe û ne jî bi kuştina rêberên tevgera azadîxwaziya gelê kurd, wekî Dr. Qasimlo, digel şikestê rû bi rû bike û ne jî karî çi rejîmek ji rejîmên welatên Ereb û Îslamî biguhere û rejîmekê bîne û xwe li cihê wan damezirîne.

Her wekî ku tê zanîn, rejîma Melayan, bi dirûşma derewîn ya "piştgirî ji tex û qatên feqîr" karî piştgiriya wan çînên feqîr û hejar bo aliyê xwe rabikêşe û deshilatê bigire destê xwe. Lê belê di nav van 25 salên çûyî de ne tenê jiyana çînên hejar xerabtir bûye, belkî qata navincî jî hatiye nav rêza nedar û hejaran. Îro ew bi xwe bi eşkerayî hewar dikin ku Îran dikare mîna welatê Arjantînê lê bihê û gelên Îranê ji ber dest kurtî û bê kariyê şoreşê bikin û bêne kuçe û kolanan.

Di nav wan 25 salane de, dahata serane li Îranê ji 2000 Dolarî daketiye bin 900 Dolarî, û eva di halekê de ye ku ew welatên ku di rêza Îranê de bûn, di nav van çend salan de, dahata wan ya serane ji 10000 Dolarî zêdetir bûye. Di 25 sal temenê rejîma Axundî de, nirxa Dolar li gor pereyê Îranê 100 beramber bûye. Di nav 10 salên yekem de, yanî ji 1359 hetanî 1369'ê, nirxa hemû tiştan 10 beramber girantir bûye. Di vî demê de, dahata rojane ya her kesekê di bajaran de hatiye bin 1.50 (1 dolar û pêncî Sintî) û di gundan de jî .80 (heştê Sint) zêdetir nine. Ma gelo, ev yek ji bo her Îraniyekê cihê nerehetiyê nine?

Melayan soz dabûn ku sîstemeke "Adil û Berz" di Îranê de ava bikin, lê belê, îro em dibînin ku çawa, teror, tecawiz, kuştin û îdam, girtina azadîxwazan, berbend kirina azadiyên medenî, girêdan û daxistina rojnameyan û serkût kirin û kuştina rewşenbîr û neyarên siyasî û ... hwd, ew qas zor û berçav in ku ji bo gelên Îranê ji devreya "Şimir û Yezîd" derbas bûye. Îro rejîma Islamî a Îranê, ne tenê rejîmek e ku bihayên bilind yên olî û simcî (exlaqî) tê de nine, belkî mîna girûpeke mafiyayî lê hatiye. Gelên Îranê şahidên rastîn yên talan kirina welatê xwe bi destê wê girûpa mafiyayî ya profeşinal in. Ji bo nimûne: Birayê rêber 550 miliyon tûmen rişwe û bertîlê distîne, û serokê parlemantoya Îslamî 300 miliyon tûmenî dixwe û ***"Axazade"*** (kurên berpirsyarên rejîmê bi vî navî di nav xelkê de tên bi nav kirin) 48 miliyard tûmen di bankê de "zexîr"a malî dike ( bi gotina: Serokê dadigeha Tehranê û bi weşandina rojnameya "Newroz" ).

Rejîmê soz dabûye gelên Îranê ku di sîstema "Welayeta Motleqe ya Feqîh"de, hikûmet dê bi destê xelkê de be û xelk dê di ser çarenivîsa (qedera) xwe de hakim bin. Lê, dinya îro dibîne ku ew soza çende sozeke derewîn bû. Çawan dibe ku rejîm û deshilat bi tewawî di destê "Wilayeta Motleqe ya Feqîh" de be, û gel jî bikaribin hakimê qedera xwe bin?

Çawan dibe ku komar (yanî hikûmeta xelkê) digel hikûmeta olî li kêleka hev bijîn?

Belê, eva 25 sal e ku hejmareke gelek biçûk bi qedera gelên Irene re dilîzin û qet jî hazir nînin ji meydanê derkevin û deshilatê bidin destê gel. Ev bedbextî û çarereşiyên ku îro di welatê Îranê de hene, mirov dikeve bîra devranên reş yên çûyî ku tenê di çîrokan de xwendine. Ev yeka di halekê de hate serê gelên Îranê ku ew gelane ji bo azadî û mafên xwe yên ji dest çûyî serhildan û şoreş kiribûn. Hetanî niha di dîroka Îranê de ne hatiye dîtin ku ev hinde mirovên azadîxwaz û rojnamevan û aştîxwaz û ciwan di girtîgehan de bin.

Bi hilbijartina Xatemî bo serok komariyê û dest pê kirina behsa got û bêj (diyalog) di navbera jiyar (temedon)an de û her weha çareseriya pirsgirêkên biyanî bi siyaseteke bê şer kirin. Lê belê, îro em dibînin ku zêdetir ji 6 salan piştî dest pêkirina serok komariya Xatemî, fitne, xirabkarî, avar û têkderî, kiriyarên terorîstî û bernameyên etomî yên rejîma Îslamî a Îranê di siyaseta derveyî de gihîştine qasekê

ku îro Îran xistiye ber telûka (xetera) hêrişa dewleta Emerîka. “George Bush”, rejîma Îranê li kêleka rejîmên dîktator yên Kureya Bakur û rejîma têkçûyî ya Sedam danî (Axis of Evil) ku divê ji nav biçin. Eger îro Emerîka hindek givaş li ser Îranê sist kiriye, ji ber vê yekê ye ku hêşta destê Emerîka di Îraqê de bend e, û naxwaze hêşta Îraq xelas nekirî piyê Îranê bîne nav meydanê. Dema ku serkomarê Emerîka bi xwe dibêje: “Hetanî demokrasî di Rojhilata Navîn de ava nebe, Emerîka nikare tenahiya xwe biparêze”, bêşik rejîma ku piştî Îraqê bihê guhertin rejîma Îranê ye. Rejîma Komara Îslamî di demekê de cejna 25 saliya xwe digire ku baskê (cinah) serkûtker û konseya notirvan (Şêwra Nobedar) bi hemû hêz û deshilata xwe ve, wekî Gurên mirovxwar hatine meydanê û hazir in ji bo parastina rejîma xwe, heta biçûktirîn bîr û baweriyên azadîxwaz û reformîst û tevgerên (hereketên) xwendekaran serkût bikin. Lê belê, cihê xweşiyê ev e ku tevgerên siyasî di nav welatê Îranê de roj bi roj mezintir dibin û rewşa têkoşîn û xebata gelên Îranê ji bo helweşandina sîstema rûreş ya olî di Îranê de amadetir dikin. Bêşik, gelên azadîxwaz yên Îranê dê vê rejîma mirovkuj û cinayetkar ya Komara Îslamî jî, wekî rejîma dîktator ya Şah, bavêjin zibildana dîrokê.

# Wexera dawiya pêşmergeyekî xebatkare partiya me



Sibêdehiya roja şemiyê 20.3.2004’e Zayînî di yekem roja Newroza 1383’e Rojî de hevalê xebatkar Sofî Kerîm Şerîfpûr pêşmergeyê kal û dêrîne PDK Îranê piştî 25 sal xizmet û têkoşîn bo gel û partiya xwe mixabin bi dilekî pir ji hêvî û hesret ve wexera dawiyê kir û çû ber dilovaniya xudê .

Kekê Sofî Kerîm Şerîfpûr li sala 1921’e Zayînî (1300’e Rojî), li gundê Garane, ser bi devera Mergewerê di malbatek xweşnav û nîştimanperwer ji dayik bû. Kekê Sofî Kerîm li destpêka şoreşa gelên Îranê, di sala 1357’ê de, pêwendî bi PDK Îranê ve girt û hetanî dema mirinê jî tekoşîna xwe domand. Di heyamê pir serbilindiye xebata wî de, du birayên wî bi navên Silêman Şerîfpûr û Mihemed Şerîfpûr di sala 1981’e Zayînî de hatine şehîd kirin û piştî salek din jî kurê wî yê mezin bi navê Mihemed Tahir Şerfîpûr hate şehîd kirin, lê şehîd bûna wan xweştiviyên wî çi bandorek nerênî li ser bawer û berxwedaniya wî nekir û her tim digot ev tiştê ku em dixwezin dibe nirxa vê bi xwînê were dan. Hejî gotinê ye ku di malbata mam Kerîm de zêdetir ji 10 kesên nêzîke wî hatine şehîd kirin ku bi ***şehîdên Şerîfpûr*** û ***Kilavreş*** bi nav û deng in. Hêvî û xweziya mam Kerîm eve bû ku hetanî roja azadiya Kurdistanê sax bimîne û wegere bo welatê bab û kalên xwe û bi çavê xwe Kurdistana azad bibîne û her di vê xaka pîroz de teslîm axê bihê kirin. Lê mixabin piştî sê mehan berxwedanî li hemberî nexweşiyê, dilê vî yê tijî ji hêvî û hesret ji lêdanê sekinî û xatira xwe ya dawiyê ji dost û heval û nasiyarên xwe xwast û hêvî û armancên xwe bi xwe re birin û çû ber dilovaniya xudê.

Seba ji dest çûna vî xebatkarî em behî û serexweşiya xwe pêşkêşî malbata bi rêze wî, xizm û kes û karên wî û xelkê şorişvane Mergewer û gundê xweragire Garane dikin û xwe di xem û kovanên wan de şirîk û hevpişk dizanin.

Riha vî şad û rêya vî pir rêving be

Birêveber û xebatkarên rojnameya **Agirî**

# "Namirin Ewên ku di dilê neteweya xwe de dijîn"

Amadekar: Bozê Sîna

Sibêdehiya roja 10’ê Xakelêweya sala 1326’e Rojî (29.03.1947), rejîma gor bi gor bûye paşayetiyê, Qazî Mihemed serkomarê Kurdistanê û pêşewayê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê tevî Mihemed Husên Xanê Seyfê Qazî û Ebulqasimê Sedrê Qazî, bi sûça pêk anîna Komara Kurdistanê û hewildan bo rizgariya gelê Kurd, li *Çar Çiraya* Mehabadê li darvekirin.

57 sal li ser wê rojê derbas bûye. Lê ne ew roje di hizra gelê Kurd de çûye û ne jî nav, bîr anîn û dîtin û ramanên Qazî Mihemd û Komara Kurdistanê di mejiyê neteweya Kurd de binbir bûye. Armanc û rêçikên Qazî Mihemed û Partiya wî û Komara wî bûne armanc û rêbaza bi milyonan xortên Kurd û bi hezaran xebatkarên Kurd di heyamê van 57 salane de canê xwe di pêxema wan de bexşîne. Di roja 10’ê Xakelêwê de, digel bîr anîna li darvekirina Qazî Mihemed û hevalên wî, em bîr anîna hemû şehîdên Kurdistanê rêz digirin û deste guleke emegdariyê li ser qebrên pîroze wan didanên, her wiha rêz û rûmetê ji bîr anîna wan û malbatên serbilinde wan digirin û van piştrast dikin ku PKD Îranê û xelkê Kurdistanê bi giştî, nahêlin xwîna şehîdan avê de biçe û bi xebat û têkoşîna berdewame xwe, armanca wan ku rizgarî û serbestiya gelê Kurd e, dê bi destve bînin. Silav ji canê paqije şehîdên Kurdistanê û berdewamî bo rêya pîroze wan ta gihîştina gelê Kurd bi azadî û mafên berheqe wan.

Bo rêz girtin ji 57’mîn salvegera li darvekirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî, û hemû şehîdên Kurdistanê rê û resmek hêja û berfireh di yek ji binkeyên Deftera Siyasî a PDK Îranê hate lidarxistin. Rê û resem bi xwendina sirûda ***"Ey şehîdan"*** û deqeyek bêdengî bo rêz girtin ji canê paqije şehîdên Kurd û Kurdistanê dest pê kir. Paşan Peyama Komîsyona Komelayetî a Partiyê ji aliyê Kekê Luqman Mêhrfer, endamê cîhgirê Komîteya Navendî hate xwendin. Dirêjiya rê û resmê bi xwendina helbest, pexşan û stranên xemgîn hate meşandin. Cihê gotinê ye ku di vê rê û resmê de Sekreterê Giştiye Partiyê, birêz Ebdula Hesenzade û piraniya herî zore endamên rêberiya hizbê û Kadr û pêşmerge û malbatên wan pişikdar bûn û piştre rê û resm bi xwendina sirûda neteweyiye ***"Ey Reqîb"*** dawî hat.



Birêz Luqman Mêhrfer

# Cejn û şahiya xelkê bajarên Kurdistana Îranê, sexmeratî zeliqandina pişkek ji mafên berheqe gelê Kurd li Kurdistana Îraqê

*Piştînîvroya roja duşemî 18'ê Reşemeya sala 1382'e Rojî bi boneya pejirandina yasaya bingehîn a rêvebirina dewleta demî a Îraqê, di zaf bajarên Kurdistana Îranê de, sexmeratî bi dest ve anîna pişkek ji mafên berheq ên gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de kom û civatên xelkê rijiyane nav şeqam û cihên giştî û xweşiya xwe seba vê biryarê şopandin.*

*Eva xwarê pişkek ji wan xwenîşandan û şahiya xortên gelê Kurd e ku li bajar û cihên cuda cuda ên Kurdistana Îranê ji xwe nîşan dane.*

## Merîwan

Roja duşemiyê 8'ê Marcha 2004 a Zayînî (18'ê Reşemeya 1382) xelkê bajarê Merîwanê, sexmeratî pejirandina yasaya bingehîn a Îraqê û pejirandina Federalî û mafên gelê Kurd di vî welatî de, rijiyane ser şeqamên bajar û her wisa bi bilind kirina Alaya Kurdistanê û dana dirûşmên nîştimanî, ew hilkefta bihagiran a dîroka Kurdistanê pîroz dikin. Xelkê Merîwanê, hevdem tevî belav bûna vê nûçeyê ketine belav kirina şirînî û pîrozbahî kirin ji hev û din, di nava bajarê Merîwanê li nêzîk bûna êvarî di qad (meydan)a Şebreng de, kom bûn û dest bi govendê kirin. Destpêka vê şahiyê, bi sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" bû, paşan ew cejne bû bi xwenîşandanek seranserî di nav şeqaman de û zêdetir ji 10000 kesan pişikdarî wê meşê bûn. Paşan vegeriyan bo nav hemû şeqamên bajarî û dîsan jî xelk di qada Şebrengê de civiyan û piştî xwe mandî kirineke zor heykelê ***Husên Fehmîde*** xistine erdê û pêpes kirin. Hejî gotinê ye ku karekî bi vî awayî (wate xistina heykelekê ku rejîma komara Îslamî danaye) di Kurdistana Îranê de bêmînak e û eva yekem car e ku karekî wisa tê kirin.

Hêzên rejîmê li tirsa civatên xelkê nekarîn bihêne derê û paşan hêdî hêdî bi xwe ketin û êrîş birin ser xelkê û di encamê de çend kes hatin girtin û hetanî niha çi agahiyek di vê derheqê de nehatiye diyar kirin.

Ev xwenîşandane ku zêdetir ji 5 demjimêran dom kir û bi dana dirûşmên cur bi cur di bin givaşa hêzên rejîmê de hêdî hêdî hatin belav kirin. Lêdana sîknala turimbêlan heta direngiya şevê her dirêjî hebû û paşan bi vî terzî xelkê pîrozbahî li serkeftina Kurdên Îraqê dikirin.

Hejî gotinê ye ku di meha derbas bûyî de, xelkê Merîwanê eve du car e ku diçine ser şeqam û bêzariya xwe didin eyan kirin, cara berê di derdora hilbijartina parlamenê de bû, ev care jî seba pîroz kirina misoger bûna mafên berheq ên gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de bû.

## Mehabad

Ji bajarê Mehabadê bi boneya mor kirina yasaya bingehîn ya birêve birina dewleta demî a Îraqê û misoger bûna parek ji mafên gelê Kurd di vî welatî, berî mor kirina yasayê li sê cihên wî bajarî girûpên muzîkê cihgir bibûn û her bi mor kirina ew yasayê gêrana ahengan dest pê bû. Xelkê bajarê Mehabadê nêzîk bi 50 hezar kes ji biçûk û mezin û jin û mêr rijiyane nav şeqaman, şahî gêrandin û kêyfxweş bûna xwe dan xuya kirin. Pişkek ji xelkê bi rêpêvanan çûne ser mezarê Pêşewa Qazî Mihemed û Mizgîniya serkeftina Kurdan li Kurdistana Başûr pêşkêş kirin. Hejî gotinê ye di nav hemû şeqaman de gel bi belav kirina şîrîniyan pîrozbahî ji hev û din dikirin.

## Pîranşar

Xelkê bajarê Pîranşarê jî bi wê meremê rijiyane ser şeqaman û bi hil kirina çirayên tirumbêlan û dana dirûşman di nav tax û kulanên bajêr de û li dar xistina govend û şahî û kêyfxweşiya xwe bi wê serkevtina gelê Kurd di Îraqê de dane eyan kirin.

## Bokan

Roja sêşemî 19'ê Reşemê demjimêr 4'ê êvarî hejmarek berbiçav ji xelkê bajarê Bokanê, sexmeratî bi dest ve hatina pişkek ji mafên gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de, li devra qada Fermandariya bajêr ku li hev civiyabûn, dest bi li dar xistina şahî û govend û şîrînî xwarinê kirin. Di dirêjiya wê xwenîşandanê de, Gard (hêz)a taybetî ku di bin navê Dijberê Şoreşê ku li fermandariyê de akincî ne, bi destûra Fermande "Rehman Elbazerî" hevdem tevî teqe kirina esmanî, êrîş kirine ser xwenîşanderan û li hemberî wan de xwenîşandanan bi dar û ber û dirûşmdan tevî hêzên tepeserkare rejîmê berhengar bûn, ne her ew cihe çol nekirin, belkî ev xwenîşandane bo şeqamên "Kurdistan", "Kemerbend", "Hacî Şehab" û "çarrêrya Seqiz"ê veguhastin.

Li gor nûçeyên dawî ya wê xwenîşandanê xelkê bajarê Bokanê ku hetanî demijmêr 5.08'ê piştînîvro dirêjî hebû, matorsîklêteke hêzên rejîmê agir berdanê û şûşe û pencereyên hejamerk ji dam û dezgehên dewletê şikandin û hejmarek berçav ji xwenîşanderan ji aliyê hêzên rejîmê ve hatine girtin ku heta niha nûçeya çarenivîsa wan ne diyar e.

## Serdeşt

Li bajarên Serdeşt û Rebetê roja 18'ê Reşemê hejmarek ji xelkê van bajaran bi bihîstina nûçeyê mor kirina yasaya rêve birina demî a Îraqê, bi nîşana hevderdî û hevdengî sexmeratî misoger bûna parek ji mafê berheq ên gelê Kurd li Kurdistana Îraqê, rijiyan nav şeqaman û dest bi govend û şirînî xwarinê kirin û piştgîrî û tagiriya xwe bi pişkek ji mafê neteweya Kurd dane xuya kirin.

## Sine

Rojên 18 û 19'ê Reşemê, xelkê bajarê Sine sexmeratî îmza kirina yasaya birêve birina demî a Îraqê ji kulan û şeqamên bajarê Sinê bi gêrana şahî û govend û belav kirina şirîniyan pîrozbahî gotin hev û din. Hevdem tevî vê şahiyê di bilindahiyên bajarî bi nîşana serkeftinê, agir hel kirin. Eve jî bûye sebeba wê hindê ku rejîm rewşek polîsî di nav bajar de zal bike, di qerax çarrê û şeqaman hêzên bi nav dijî şoreşê bi terzek berbiçav xuya dikirin.

# Çend nûçe ji bajarên Kurdistanê

## Li Urmiyê agirê sersalê bi berfirehî hat hil kirin

Êvariya roja sêşemiyê li bajarê Urmiyê hêzên rejîmê ku hemû tax, kulanên bajêr xistibûne bin zêreviniya xwe, lê bi tarî bûna hewa, xelkê bajêr û der û dor bi giştî bi hil kirina agirê kuleçarşemiyê, dengê teqe û xweşî û govenda xelkê hemû bajar bi xwe girtibû. Bi awayekê ku dengê teqe û dengê teqîna tereqeyan ev hinde zor û xurt bû ku mirov seh dikir ku di bajar de şerekî zor mezin heye. Hêzên rejîmê li paygehên xwe de nevêran derkevin. Her wiha li tev herêmên der û dor û çiya û gundan, li ser hemû rê û banan bi pêşwazî kirina sala nû û Newrozê agir hate hilkirin.

### Bane

Piştî belav bûna nûçeyê îmaza kirina destûra bingehîn a demî li Îraqê, hezaran kes ji xelkê bajarê Banê bi merema pişikdarî li şahî û kêyfxweşiya gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de, demjimêr 5'ê piştînîvroya roja 19'ê Reşemê, rijyane nava şeqaman û bi avêtina dirûşmên cur bi cur seha azadîxweziya xwe di vê derheqê de derikandin. Hêzên rejîmê bi dezgehên fîlim rakirinê ketibûne nîgar girtina xelkê bo vê hindê paşan nas bikin ku ji aliyê xwenîşanderan ve kamerayên wan hatin şikandin û du ji memûrên tepeserkare rejîmê ketin ber êrîşa xelkê nerazî û bizal hatî.

### Seqiz

Bi biryara Şaredarê bajarê Seqizê di kulana Beharistanê de çar malên xelkê hejar û bê berevan hatin hiloşandin, ev bûyere piştînîvroya roja 15'ê Reşemeya 1382'e Rojî qewimî. Her wisan di taxa Tepî Malan de jî dest bi xirab kirina malên xelkê kiriye ku hetanî niha du mal hiloşandin e û xelkê vê bê serpenah hêlan e.

### Merîwan

Heyamek berî niha rejîmê di herîmên Serşîw, Komasî, BerPileyî, Saral û piraniya herêma Merîwanê, bi hegera raportdana kirêgirtên rejîmê li ser xelkê ku îdiayê dikin ku wan çek hene, xelkê vê deverê xistine bin givaş û binçav kirinê û daxweza çekan ji wan dikin. Xelkê van herêmane jî ji ber vê hindê ku nekevin ber azar û îşkenceyê bi neçarî çekan dikirin, yan jî diravê çekê bi kirêgirtiyê rejîmê didin.

### Kirmaşan

Roja 16'ê Reşemeya 1382'e Rojî nêzîk bi 5000 kes ji Ferhengiyên bajarê Kirmaşanê li hember derê îdareya Perwerde û Elimandin ya giştiye parêzgehê ku li Ferhengiyana 1 hilketiye, seba rewş û zirûfa nebaşe jiyana xwe civiyan û nerazî bûna xwe dane xuya kirin. Mamosta ên xwendingehan gotibûn ku heke hetanî 3'ê rojên din rayedarên berpirs arîşe û pirsgirêkên wan çareser nekin ew naçin bo ser kilasan.

### Seqiz

Hejmarek ji xelkê bajarê Seqizê roja 14'ê Reşemeya 1382'e Rojî rê û resma behî û serexweşiya çilê şehîdên bûyerên terorîstî ên bajarê Hewlêrê di Mizgefta Hezretê Omer de birêve birin. Di wê rê û resmê de 2000 kesan pişikdarî kiribû. Rê û resma han bi xwandina çend ayet ji Qurana pîroz dest pê kir û piştre bi xêr hatina mêwanan hate kirin. Paşan jî çend kesan li ser teror û terorperweriyê bi berfirehî axivîn. Di doma vê rê û resmê de Dr. Pîrot Ehmed nonerê PDk'ê li ser Federalîzm û Kurdistanê axivî. Piştre jî peyama Mekteba Siyasî a YNk'ê ji aliyê Diyarî Gelalî ve hate xwendin. Her di vê rê û resmê de peyama mamostayên Seqizê hate xwendin. Hejî gotinê ye ku Îtilaat (êstixbarat) û hêzên dijî gelî ên rejîmê bi kincên şexsî di nav û derveyî mizgeftê de, amadeyî êrîş birin bo ser her terze liv û bizavekê bûn ku heke ji aliyê pişikdaran ve birêve biçe.

### Pîranşar

Di encama teqîna gule Xumpareyekê ku di mala Marif Morîk naskirî bi Marif Goran di roja 12'ê Rêbendana 1382'e Rojî de qewimî, bû sebeba birîndar bûna 3 kesan bi navên Tahir Morîk, Siyamend Morîk, Semed Doşabî. Mixabin li rêya veguhastina wan ji nexweşxaneyê bo bajarê Urmiyê siyamend jiyana xwe ji dest da.

### Kamiyaran

Bajarê Kamiyaranê di rojên Tasûa û Aşûrayê de bû bi meydana hin aloziyan di navbera Sunnî û Şîîan de, ku bû bi hegera pêk hatina meş û aloziya wî bajarî. Ev meşe rengê dijberî tevî rejîmê bi xwe ve girt û piştî şikandina şûşe û pencereyên bank û îdareyên dewletî, hejmarek ji xelkê ji aliyê hêzên rejîmê ve hatine girtin û rapêçî girtîgehê kirin û çend rojan di wî bajarî de rewşa awarte cihgir bû û kit kite xelk dihate girtin. Hejî gotinê ye ku rejîmê cehd dikir ku di navbera Sunnî û Şîîan de dubendiyê çê bike, lê bi arxayînî ve ew bi wan hêviyên qirêje xwe nagihîje.

### Nexede

Desteyek ji xortên bajarê Nexedê seba pesind kirina Federalîzmê li Başûrê Kurdistanê di roja sêşemî 02.04.2004 a Zayînî hembrî 12.12.1382'e Rojî, demjimêr 8'ê şevê li parka "Moelim" de dest bi agir hil kirinê û dirûşmên mîna *"bijî Kurdistan"*, *"aferîn Qazî Mihemed"*, *"aferîn Qasimlo"*, *"Qasimlo, Qasimlo rêya te dirêjî heye"* avêtin. Paşan hêzên rejîmê xwe gehandin parkê û tevçûn di navbera wan xortan û hêzên rejîmê dest pê kirin.

-Roja çarşemî demjimêr 8'ê sibêdê, xwendekarên duya navendî a "Azadigan" piştî ketine gireva mamostayan bi dirûşmên weke *"bijî Kurdistan"*, *"Kurdistan azadî"* ber bi şeqama Balexçî bi rê ketin û çûn bo cadeya "Îsmayîlabad" û demjimêr 9'ê sibêde hatin belav kirin.

Her di vê şevê de hêzên rejîmê di parkê de xwe weşartibûn, lê bi vî halî jî xort meşiyan bo nav parkê û dirûşmên xwe ên berê dubare dikirin, di vê demê de kinc şexsî û Besîciyên xwe firoşe Kurd bi batom û kêran ketine canê wan û her kesek ku ketiba destê wan dikutan û digirtin. Heta dema şandina vê nûçeyê jî tu zanyariyek li dor rewşa wan girtiyan nehatiye belav kirin. Wan Besîciyan heta li tax û kulanên başûre bajêrî (ku kurd akincî ne) her kesek hatiba ber çavê wan dikutan û digirtin. Serbarê ev hemû zext û givaşane, roja din xwendekar hatin şeqaman û dirûşmên roja berê dubare kirin.

# Hêrişa berfirehe dezgehên Îtilaat û hêzên tepeserkere rejîmê

## Bo ser xelkê Kurdistanê

Piştî mor kirina zagona rêvebirina dewleta demî a Îraqê di roja duşemî 18'ê Reşemeya 1382'e Rojî (08.03.2004) de, xelkê bajar û cihên cur bi cur ên Kurdistana Îranê bi nîşaneya kêyfxweşî û der birîna seha neteweyiye xwe ketin şeqam û cihên giştî û bi bexşîna şîrînî û li dar xistina şahî û govendê pêşwazî ji serkeftin û hevgirtina xelkê Îraqê kirin û bo bi dest ve anîna parek ji maf û azadiyên gelê Kurd li Îraqê di zagona birêve birina dewleta demî a Îraqê de tevlî şa bûn û serkeftina vê parê ji xortên gelê Kurd bûn.

Rejîma Komara Îslamî a Îranê ku di bingeh de dijî misoger bûna maf û azadiyên xelkê Îranê û hetanî akinciyên welatên cîran jî ye şiyana dîtina van dîmenên ji şadî û kêyfxweşî bûna gelê Kurd li Kurdistana Îranê nebû û bi hêriş birin bo ser xelkê bajar û cihên Kurdistanê hejmarek ji wî xelkî kuştin û birîndar kirin û pitir ji 500 kes jî li bajarên weke Merîwan, Bokan, Seqiz, Mehabad, Sine û Pîranşarê girtin û hepsî kirin û pêvajoya van girtin û bin çav kirinan didome.

Komara Îslamî ji bo bi nav mehkeme kirina van girtî û hepsî kiriyan tîmek xasmanî ji Tehranê ve bo bajarên Kurdistanê û nemaze Merîwanê aniye û dixwazin bi çend pirsyarên serpêyî û çend deqeyî hikmê zalimane bi ser wan de bisepîne.

Di vê pêwendiyê de em daxwazê ji kom, komeleyên mirovhez û rêxistinên alîgirên mafên mirovan dikin ku li hember vê pêvajoya serkût û tepeser kirinê dengê rexne û nerazî bûna xwe bilind bikin û ji her rêyeke mimkin vê rejîmê bixin bin zext û givaşê bo evê ku kerb û kîna dijî gelî û kevnarperweraneye xwe bi girtiyên van çend rojên dawiyê nerêjin. Her wiha li cihê xwe de ye ku rêxistinên Opozîsyona Îranê jî di vî warî de bê tefawet nebin û bi awayên cur bi cur dengê rexne û nerazî bûna xwe derheq vê pêvajoya tepeser kirinê bidin xuya kirin. Bi vê hêviyê ku cehd û hewildanên mirovane ên hemû aliyekê bandorê li ser azad û serbest bûna ev hejmare ji azadîxwazên Kurd li Kurdistana Îranê danê û rejîma Komara Îslamî a Îranê neçar be dest ji vê pêvajoya han berde û paşde bikişe.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**21.12.1382'e Rojî**
**11.03.2004'e Zayînî**

**Doma rûpelê 20'ê:**

Daxuyanî

## Seba mor kirina yasaya birêve birina dewleta demî a Îraqê

Yasaya birêvebirina dewleta demî a Îraqê her çi qas hemû xwestik û daxwazên xelkê Îraqê bi giştî û gelê Kurd li Kurdistana Îraqê bi xasmanî ji xwe negirtî ye, bi vê yekê jî, fermiyet dan bi hikûmetek Komarî, Federalî û tev alî û li berçav girtina azadiyên kesî, bi fermî nas kirina du zimanên Erebî û Kurdî di Îraqê de, her wiha parve kirina deshilatê di navbera herêm û parêzgehan de û hurmet danan bo pêkhatên neteweyî, ayînî û olî û misoger kirina pareke berbiçav ji azadiyên demokratîk û ji nav birina ferq û cudahî danan di navbera akinciyên welat da û dana nexş û rolê berçav bi Jinan di ava kirina Îraqa nû de, bo gelên Îraqê û civatên xelkê wî welatî guhertineke pîroz û cihê hêviyê ye. Seba vê yekê tevî pîroz kirina ji xelkê Îraqê bi giştî, gelê zulim jêkirî û elem kêşaiye Kurd bi xasmanî, ku roleke bandordar di xebata dijî dîktatoriyê de gêra û nonerên wê (wî gelî) jî di Civata Deshilata Îraqê de cehdeke karsaz bo cihgir kirin û ser xistina vê yasayê ji xwe nîşan dan, em hêvîdar in ku ev yasaye bibe bingeha Îraqeke demokratîk û nujdarkerê birînen gelê Kurd û hemû xelkê Îraqê. Bêşik û guman hemû azadîxwazên cîhanê bi giştî û gelê Kurd di parçeyên din yên Kurdistanê bi xasmanî bi serkevtina xelkê Îraqê û bi maf gihîştina gelê Kurd li Îraqê kêyfxweş in û vê destkevta dîrokî bi serkeftina demokrasî û mafê gelan bi ser dîktatorî û serberedayiyê de dizanin û her ji gor vê yekê jî gelê Kurd li Îranê û Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di şahî û xweşî a xweşk û birayên Kurde xwe di Kurdistana Îraqê de pişikdar in û vê destkevtê bi destkevta hemû azadîxwazan û nemaze azadîxwazên Kurd dihesibînin

Mor kirina yasaya birêve birina dewleta demî a Îraqê û yasayî bûna pareke berbiçav ji maf û azadiyên xelkê Îraqê û gelê Kurd di wî welatî, ji hemû xelkê Îraqê û gelê Kurd bi xasmanî pîroz be.

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**19'ê Reşemeya 1382'e Rojî**
**09'ê Marcha 2004'e Zayînî**

**Doma rûpelê 1**

# Em serkut û kuştina xortên gelê Kurd li bajarê Qamişloyê şermezar dikin



Eger hêrişa kêr û çomaq bidestan bo ser Kurdan li yarîgeha bajarê Qamişloyê di cihê xwe de regez perestane û namirovane bû, riftar û kiryara hêzên rejîmê û destûra êrîş kirin ji aliyê rejîma Bees ya Sûriyeyê bo ser Kurdan û xwe ne parastin ji teqe û birîndar kirin û kuştina xortên Kurd bi xwe li kakil û naveroka ne demokratîk û şovînîstane a rejîmê ser digire. Mixabin hêrişa hêzên rejîmê bo ser xortên gelê Kurd li Qamişloyê sedan birîndar û dehan kuştî lê ketine ku nîşaneya berfireh a zordarî û serdestiya rejîmê û bê deshilat bûna xortên gelê Kurd di vî welatî bû ku ne tenê bo Kurdan belkî bo Ereban jî nahê danîn.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê vê kiryar û riftara tepeserkerane ya hikûmeta Bees a Sûriyeyê derheq xortên gelê Kurd li wî welatî bi tundî şermezar û mehkûm dike û daxwazê ji hemû rêxistinên mafên mirovan û tev aliyên berevankar ên maf û azadiyên mirovî dike ku riftara hov û dirindane ya rejîma Bees a Sûriyeyê derheq bi Kurdên vî welatî şermezar bikin û givaş û zextê bixin ser rejîma Beesî a Sûriyeyê ta ku çi din mafê gelê Kurd li vî welatî nehê bin pê kirin û di hember bîr û hizra giştî de xortên vî gelî (Kurd) nekuje.

# Demokrasî, biha û piraktîka wê

*Beşa 2.*

Kurmanc Hakki
hejar@yahoo.com

Li beşa yekem da me da xuyanî kirin ku demokrasî wek amanc û sîstema here îdeal ji bo çareseriya deverê xasmayî bo Kurdistanê tê dîtin. Di vê beşê de em ser wateyên cur bi cure demokrasiyê bi awayekî kurt rawestin:

Me li beşa yekem da got demokrasî li aliyekê wek pêvajoyek şiroveyî hatiye dîtin û li aliyek din wek sîstemek normatîv (yasayî) ku têde kar û barên civakî li ser bingehên yasayan tên perjandin hatiye wata kirin. Di basa xwe de em vê ser demokrasiya normatîv bisekinin, ji ber ku bas kirin li ser aliyê şiroveyiya demokrasiyê karê zanîngeha û nêzîk bûneweyek felsefî ye.

Hewla demokrasiya normatîv ewa ku pirsgirêkên bingehîne demokrasiyê bixe ber bas. Bihayên demokrasiyê em dikaribin wek şêweyek li şeriyet û yasayî bûna demokrasiyê bibînin. Pirsyarek ku tê pêş: Gelo çima em demokrasiyê li mêzegeha bihayên demokratî dixwazibin bînine ber bas û em demokrasiyên heyî (mewcûd) berhev naden?

Yekem eger em demokrasiyê li çarçoveya berhevdana sîstemên heyî binirxînin, wataya wê nikaribe bersiva hemû pirsyarên me bidetewe û ji ber hebûna têgehiştin û nêzî bûnên cur bi cur bi demokrasiyê em nagehin têgehiştinek hevbeş. Duhem nirxandina bingehên demokrasiyê û bihayên wê dê alîkariya me bike bo negehiştin bi hinek encamên bikiryar (kollektîv). Nirxandina han hewce ye bo wê ku em bizanibin bo cî be cî kirina demokrasiyê me hewce bi çi cur saziyan heye. Sêhem li lêkolîna berhev karaneye ser demokrasiyê gelek caran ewana li ser bingeha saziyên demokrasî tên nasandin. Xasmayî di wan salên derbza bûyî de li welatên demokratîk nemaze welatên Auropî li ser demokrasiya beşdarî kerane (demokrasiyê moşariketî), ku li cihê xwe de wataya bingehîne amanca pêşeroja hizba me jî pêk tîne, disekinin. Li demokrasiya moşariketî de li ser şêweya beşdariya xelkê li piroseyên biryardanê û kar kirina saziyên demokratîk ser kiryarên mirov lêkolîn tê kirin.

Çiwarem, lêkdanewa bihayên demokrasiyê dê alîkariya me biket ji bo têgehiştina wataya yasayiye (meşrûiyet[1]) wê. Bi wê wateyê ku li gor dîtina xelkê demokrasî hetanî çi qasekê cihê pesend kirinê ye. Bi watayekî din çima havwelatî hinek meselan qebûl dikin, lê hinek tiştan pesend nakin? Em dikaribin bêjin ku demokratî bûna sîstemekê berî her tiştekê meşrûiyeta wê demokrasiyê cem xelkê wî welatiye.

Li ser demokrasiyê gelek lêkolîn hatin kirin û gelek şêwazên lêkdanewe û tefsîrên cuda hatin nivîsandin. Em ji bo kurt kirina babetê û ji ber vê ku mebesta me li wê nivîsê wekirina lêkolînê ser demokrasiyê niye, belkî bas kirin li ser bingehên demokrasiyê bi awayekî berfireh û giştî ye xwe ji bas kirin li rêbazên cur bi cure lêkolîna ser demokrasiyê biparêzin.

Mebesta me ya destpêkî li vê nivîsê de:

1. Diyar kirina hel û mercên civakiya demokrasiyê ji bo nas kirina baştirîn û xiraptirîn hel û mercên civakiye pêwendîdar bi demokrasiyê
2. Nasandina ew şêwazane ku nîşan didin bi çi awayê demokrasî baştirîn rêye bo çareseriya adilaneye kêşeyên civakî.

## Kurtiyek ji dîroka demokrasiyê

Ji ber vê ku şêwazên berhevdana demokrasiyê cur bi cur in, em di vê beşê de bi kurtî amajeyekê dê bi dîroka demokrasiyê bikin. Ji bo ku em bizanibin bi rastî di destpêkê de demokrasî çewa hatiye wate kirin ya baş ewa ku em bingeha wê nas bikin. Peyva ***demokrasî*** peyweke Yonanî ye ku li du (2) peyvên *demos* (gel) û *kratos* (hikûmet yan deselat) hatî ye. Li sala 507 berî Zayînê hikûmeta Atênê destpêka sîstema demokratîk bizanibin ku hetanî sala 322'ê berî Zayînê berdewam geşe kirî ye. Demokrasî her wisa li bajarên dine Yonanê li radeya nawçeyî dihat piraktîk kirin. Şêwaza biryardanê di van demokrasiya ne da mîna şêweya biryardanê li Atêna paytext bû.

Bingeha biryardanê li demokrasiya Atênê ya ku li niha şûnde em bi demokrasiya kilasîk vê bidin nasandin, cîvîna gel bû (ekleesia). Gel salê nêzîkî 40 caran kom dibû û li ser pirsên pêwendîdar bi welatê xwe biryar didan. Merca biryar dan li ser hinek pirsgirêkan beşdariya bi kêmanî 6000 kesan li civîna gel da bû. Saz kirina cihê kom bûna 6000 kesan li cihekê di vê demê de mezintirîn xanî dihatin hesibandin. Dibêjin hetanî sala 300 a berî Zayînê hinek cîhên ku bo civînên gel hatibûn sazkirin çarêkek (25 %) li nifûsa welatî dikarî bû beşdarî civînan bin. Civîna gel bo nimûne li ser şêweya hêminayetî, sîstema malyatî û pêwendî bi welatên dereve biryar dida. Li biryar dana de hewil ev bû ku bi awayeke yek deng bigehin qenaeta hawbeş. Lê li hinek pirsgirêkên ku pêk hatin ser wana zehmet bû zoraniya denga meşrûiyet dida biryaran.

Civîna gel mezin bû ji bo lêkdan û bas kirin ser pirsgirêkan. Lewma li Atênê şêwrek 500 kesî hatibû hilbijartin ji bo dan û sitandin li ser mijarên civîna gel û amade kirina lîsteyên biryar danê. Encumena han li ser şêweya bas kirina babetan û pêşkêş kirina wana biryar didan. Di destpêkê de endamên encumenê (şêwr) li nav kandîdatoran dihatin hilbijartin. Di şûn de endamên encumenê ji nav hevwelatiyan bi şêweya qurê (قرعه) dihatin hilbijartin. Hevwelatî li Yonana kevin de hemû ew mêrên serbest bûn ku temenê wana serewey 20 sal bû. Bi watayek din, jin, kole, karker û kesên bin 20 salî hevwelatî nedihatin hesab kirin. Ji bona wê ku rêya hilbijartinê bo her kesê hebit her kesek bo salekê dihat hilbijartin.

Li roja îro de giringtirîn xala demokrasiyê piroseya biryardanê ye ku li rêya nonerên hilbijartiye hevwelatiyan tê encam dan. Kar û barên îdarî jî li aliyê kesên bêalî û pispor birêve diçin. Wate cudahiya demokrasiya niha digel demokrasiya kilasîk ewa bû ku li wê demê de birêveber û karbidestên îdarî ji aliyê hevwelatiyan dihat hilbijartin. Ji bilî hilbijartina endamên idarî ji rêya qurê, wezîfe û çarçoveya karê wana li civîna gel de dihat biryar dan.

Cudahiya demokrasiya nûdem digel demokrasiya kilasîk li vê de ye ku li demokrasiya kilasîk de tenê mêrên azad mafê hevwelatiyê hebûn û heqê wana hebûn li piroseya biryardanê de beşdar bin. Lê di demokrasiya modern de mafê beşdarî yê hemû hevwelatiyên balix e. Şêweya hilbijartina karbidestan bi awayê qurê jî bit bi destê Arîstokrat û xwedî deshilata bû. Lewma hilbijartina bi awaya qurê di nav civakek biçûk da demokratîk dihat hesab kirin.

***Komar*** wek pêvajoyek hemberî demokrasiya kilasîk li serdema şoreşa Amrîka (1776) Feransa (1789) hat geşe kirin. Bi gor vê pêvajoyê **komar** wek peyveke latîn li dû (2) zaraveyên *res publica* bi wateya pirsa hawbeş tê. Alîgirên sîstema komarî bi vê bawerê ne ku sîstema vana hevdaneke li aliyên başe sîstema monarşî (padîşahî), arîstokrasî û demokrasiyê ye.

li gor lêkdanên radîkal û demokratîk azadiya hevwelatiyan demek dê bê misoger kirin ku hevwelatî bi awayekî wek hev û kolektîv beşdarê piroseya biryardanê bikin.

Li beşa datê de em dê ser mijara demokrasî û hukmê gel rawestin.

---

1 Legitimacy

# Daxuyaniya Deftera Siyasî

## Li dor dawî pê hatina çardehemîn Pilînoma Komîteya Navendî



Hevwelatiyên birêz!

Xelkê azadîxwaze Kurdistanê!

Komîteya Navendî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, hilbijêra Kongreya dazdeheme Partiyê, demjimêr 9'ê sibêdeya roja şemî 8'ê Xakelêweya 1383'e Rojî hemberî 27'ê Marcha 2004'e Zayînî, çardehemîn Pilînoma xwe bi pişikdariya piraniya herî zore endam, cihgir û şêwrên Komîteya Navendî lidarxist.

Pilînom bi ragirtina deqeyek bêdengî bo rêz girtin ji canê paqije şehîdên Gel û Partiyê dest pê bû. Piştre destûra karê Pilînomê kete ber çavê beşdaran û paş bas û gengeşe di wê pêwendiyê de hate pejirandin.

Piştî pesind kirina destûra karê Pilînomê, rapora Deftera Siyasî ji aliyê hevalê birêz û xebatkar Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiye PDK Îranê pêşkêşî beşdarên Pilînomê hate kirin. Di wê rapora Siaysî de pirsên giringe evroye cîhanê, guhertinên Rojhilata Navîn, bixasmayî guhertinên vê dawiyê li Îraqê û pirsgirêka Kurd di vî welatî û eniyên cîhanî û deverî bi hûrî û berfirehî îşare pê hatibû kirin. Her wiha berhevdana rewşa siyasiye Îranê û hilbijartinên 7'mîn gera Meclîsa Şêwra Îsalmî û bandor û encamên wê hilbijartinê li ser xelkê Îran û bîr û raya giştiye cîhanê, parek din ji rapora giringe Deftera Siyasî bû. Berhevdana rewşa Kurdistana Îranê û xebata rû li geş û xurt bûna civatên xelkê Kurdistanê tewereke dine rapora Deftera Siyasî pêk anîbû. Ew rapora hûr û berfireh û tev alî di çend rûniştinên Pilînomê de kete ber bas û gengeşeya beşdaran û bi piraniya dengan hate pejirandin.

Di pişkeke dine kar û bernameya Pilînomê de, Pêşniyazên Komîteya amade kirina Kongreya 13 a Partiyê ku ji hêla Deftera Siyasî ve hatibû pesind kirin, kete ber çavê beşdarên Pilînomê. Endamên rêberiya Partiyê di çend rûniştinên Pilînomê de bi awayekî çeleng beşdarî basên pêwendîdar bi wan meselane dikirin û terha amade kirina Kongreyê bi hinek destkarî (têkilbûnan) kirinan, pejirandin.

Di para dine karê Pilînomê de berpirsyarê teşkîlata Partiyê li derveyî welêt, raporek hûr û tev alî li ser rewşa teşkîlatî û buroyên Partiyê li derveyî welat pêşkêşî Pilînomê kir. Beşdarên Pilînomê piştî beyan kirina dîtin û nêrînên xwe di pêwendî tevî kar û barên teşkîlatî û dîplomasiya Partiyê li derveyî welat, têdîtin û şîret û raspardeyên xwe bi merema baştir bûn û pêşde çûna pitire karên Partiyê di vê pêwendiyê de digel berpirsyarê teşkîlata partiyê li derveyî welat anîn ziman.

Pilînom di dirîjiya kar û bernameyên xwe de komek meseleyên pêwendîdar bi kar û barên hundire partiyê û organên cur bi cur xistin ber basê û di pêwendî digel her yek ji van meselane de jî şîretên xwe Pêşkêşî Deftera Siyasî kirin.

Çardehemîn Pilînoma Komîteya Navendî piştî 4 rojan karê berdewam û bas û biryardanan di pêwendî ligel hemû ew pirsên ku di destûra karê Pilînomê de cih girtibûn, demijmêr 4'ê êvariya roja sêşemî bervarê 11'ê Xakelêwê (30 Marcha) dawî bi karên xwe anî.

**Deftera Siyasî ya PDK Îranê**

**12'ê Xakelêweya 1383'e Rojî**

**31'ê Marcha 2004'e Zayînî**

## Koma huneriya Rojhilat, di şeva Newrozê de KURDISTANtv xemiland







Koma hunerî a Rojhelat, ser bi PDK Îranê ku ji komek keç û xortên şoreşvane vê partiyê pêk hatiye di yekem şeva cejan pîroze Newrozê ku ji aliyê setelayta ***KURDISATN***tv hatibûn gazî kirin di stodyoya vê televizyonê de bi pêşkêş kirina çend govendên Fulkuloriye Kurdî di du pişkên Badînî û Soranî de, bû bi mêvanê malên hogirên vê TV'yê, û cejna Neteweyiye Kurdan bi pêşkeş kirina parek ji govendên Fulkuloriye herêmên Kurdistana Îranê pîroz kirin.

Hejî gotinê ye ku du rojan berî Newrozê di rê û resma Kuleçarşemiyê de tîpa Rojhelat ji aliyê komîteya Yekîtiya Ciwanên Demokrat a Kurdistana Îranê, ser bi Zanîngeha Selahedîn li bajarê Hewlêrê hatibûn gazî kirin ku li Sentera Ala ser bi buroya Hizba Şîuî ya Kurdistana Îraqê hunera xwe xistine ber çavê pişikdarên vê rê û resmê û dilê van coşandin.

Hewce ye bêjîn ku koma Rojhelat di roja 31.03.2003'e Zayînî hemberî 11.01.1382'e Rojî bi awayekî fermî hetiye ava kirin ku ji komek keç û xortên niştimanperwer pêk hatiye. Cihê gotinê ye ku tîpa Rojhelat hetanî niha di 9 bernameyên hunerî de pişikdarî kiriye.

**Mamend Roje**

# Rojhilat Parçeya Dayîk e

Di dîroka her gelekî de hinek qaîde û rêsa hene ku pêwîst e ev rêsa bêne nas kirin, heta taybetmendiyên dîroka me jî bête nas kirin. Bê guman nas kirina van rêsayên dîrokî dikare di vekirina pirsgirêkên civakî-dîrokî de gelek destek bide me.

Dîroka Kurdan di Rojhilatê Kurdistanê de du aliyên xwe hene. Yekem eve ku Kurdan bi xwe binyata Îranê daniye û yekemîn dewleta Îranê Kurdan ava kirine, anku dewleta Medya. Ya din eve ku ji destpêk ve navê Îranê bi xwe Kurdan anîne holê. Niha bi vî rengî tê fam kirin ku aliyekî dîroka me ber bi Rojhilat, yanî ber bi Îranê ye.

Aliyê din jî ber bi Rojava ye, yanî ber bi parçên din yên Kurdistanê diçe. Piştî gav avêtina yekem ku Kurd bingeh û hêma Îranê danî, vêca berê xwe ziviriand ber bi Rojava. Di 612'an berî Zayînê de bav û kalan împratoriya Aşûr herifandin. Bi vî rengî Kurd ji çiyayên Qendîl-Zagrosê daketin û rûyê xwe dan deştên Mezopotamyayê. Ji wê demê û vir de bav û kalên me di deştan de binegha kultur û şaristaniyek nû danîn. Di êrîşa yekemîn de Kurd di deştên Mezopotamyayê de bi cih bûn. Yanî hatin û li Başûr cîhwar bûn. Di van sedsalên dawî de Kurd di encamên şerên Sasanî-Bîzansî û Osmanî-Bizansî de ber bi çiyayên Torosan çûn. Bi taybet piştî komkujiya Ermeniyan, Kurdan seranserî Ermenistan jî girtin. Bi vî halî di gava sêhemîn de Kurd çûne Bakurê Kurdistanê. Encama ku mirov dikare lêre de bigire eve ku Kurd ji Rojhilatê Kurdistanê ber bi parçên din çûne. Çawan Kurd ji Kurdistanê ve ber bi Îranê çûn û bingeha şaristaniya Îranê danîn, wisa jî, ji Rojhiltê Kurdistanê ve ber bi parçên din çûne. Bi kurtasî mirov dikare bêje ku Kurdistana Rojhilat, "parça Dayîk e".

Herweha di dîroka me de yasayekî din her tim xwe dubare kirî ye. Eva jî zagona fîzîkî ya "Navend <-> perawêz e". Dema Navend bihêz bûye, perawêz lawaz bûye. Berevaj jî dema Navend lawaz bûye, perawêz xurt bûye. Di vê sedsala çûyî de dema di Tehranê de hikûmeta Qacarî hate guhertin, paytext lawaz bû û Kurdistan rabû yanî serhildana Simayîl Axayê Şikak dest pê kir. Lê dema paytext ji aliyê hikûmeta nû ve xurt û Riza şah hate ser hukim, serhildana Simayîl Axa vemirî.

Her bi vî halî dema Riza Şah çû, Komara Kurdistanê ji dayîk bû. Dema ku Tehran ji nû ve can girt û Şahê duyem yanî "Mihemed Riza Şah" hukim girte dest, bi darve kirina Pêşewa re Komara Kurdistanê jî dawî pê hat. Bi hiloşîna hikûmeta şayî re serhildana nû çê bû. Lê piştî Komara Îsalmî hêz girt, serhildana nû jî ber bi lawaz bûnê çû.

Ya din jî rastiyek e ku her demekê dewletên Îranê li hember tevgera rizgariya Kurdistanê û rêberatiya wî de siyasetek bi pîlan û komplo meşandine. Di kêleke wiha de jî serokatiya bizava rizgariya Kurdistanê jî her tim bi xeflet û wehimê nêzîkî dewletên navendî bûye, lewma herdem jî dijmin di mejî de derb ji bizava rizgariya neteweyiya Kurdistanê daye. Bo nimûne Simayîl Axa ji bo got û bêja siyasî bang kiribûn, lêdan kuştin. Soz û peymana Otonomiyê dabûne Pêşewa, lê leyîsto meşandin. Tewera dawî jî Dr. Qasimlo kişandine vê bazina dîrokê û bi şehîd kirina wî re car din dîrokê dubare kirin. Gelo êdî dema wê nehatiye ku ev nifş rêsayên dîroka xwe û dijmin nas bike û ji vê bazineya girêdayî derkeve?

**Mamostayên nerazî li Îranê:**

# "Em kêmtirîn mafê jiyanê dixwazin"

Amade kirina: Dûz Gulole

Heftemîn meşa mamostayan li Îranê ji roja şemî 16.12.1382'e Rojî (06.03.2004) dest pê bû. Biryara meşa yek hefteyî ya îsal piştî kom bûna 100 kes ji nonerên civatên sinfî ên ferhengiyan li hember parlamentoya Îslamî a Îranê li roja 9'ê Reşemê hate girtin û li Tehranê dest pê bû û hêdî hêdî piraniya xwendingehên seranserê Îranê bi xwe girt. Meşa vê carê bi pêşwaziya berfireh ya xwendekar û malbatên wan rû bi rû bû.

Li gor gotina Elî Esxer Zatî, berdevkê yek ji civatên sinfî ên mamostayan pitir ji 30 ji sedêye mamostayên welat ku nêzîk 200000 kes dibin di meşa îsal de pişikdarî kirine. Çend kes ji mamostayên nerazî dan zanîn ku ji bo ku ew bikaribin di encam dana erk û wezîfeyên wijdanî û hirfeyî ên xwe de serkeftî bibin, tenê dixwazin ku kêmtirîn dahatê bo qetandina jiyanê hebin. Wan siyasetên Wezareta Perwerde û hîn kirinê seba pirsgirêkên xwe rexne kirin.



Giriv girtina Mamostayan, parek zor ji xwendingeh vala hêlan

Wêne ji Rojnameya Şerq çapa Tehranê hatiye wergirtin

## Berpirsyarên rejîmê bêdeng man!

Meşa nerazî bûna mamostayan bi civîna Rêxistina Ajansa Enirjî a Etomî hevdem bû, û di civîna han de rewşa etomî ya Îranê kete ber rexne û êrîşan. Pirsa han hizr û ramana berpirsyar û rayedarên dewletê bi xwe mijol kiribû. Nonerên civatên sinfî ên mamostayan daxwaza hevdîtin bi serok komar Xatemî kirin, lê wî, ew bê bersiv hêlan û çi hurmetek ji bo xwestika demokratîk a wan negirt. Heta Murteza Hacî, Wezîrê Perwerde û hîn kirinê jî derheq daxwaz û pirsgirêkên ku mamostayan seba wan meş li dar xistibûn, bêdengî ragihand.

## Dawî bûna meşa maostayan li Îranê, lê pirsgirêk berdewam in

Di halekê de ku roja pêncşemî 11'ê Marchê bi kiryar meşa yek hefteyî ya mamostayên Îranê bi dawî hat û çi encamek bo mamostayan ku di Îranê de qata herî dest kurt a civakê tên hesibandin, nebû. Niha êdî malbatên xwendekaran jî fêm dikin ku rewşa xerab ya mamostayan bandor li ser çawaniya ders û wane gotin bi zarokên wan re dike. Mamosta qata herî bi bandor a civaka me bûne û hene û karê dijwar û girîng a perwerde û pêgihandina nifşa pêşeroja welat li stûyê wan e. Wan biryar girtin ta bo vê ku bo xwendevanan pirsgirêkên kêmtir derkevin, ji roja şemiyê kilasên ders gotin xwe pêk bînin û di halekê de ku bi pirsgirêkên bê bersiv ên xwe rû bi rû man, di hizra rê çareyek din bo sala 83'ê de ne.



Karîkatêrîst, Reuf Xetîbî:

# Hunera karîkatorê di civaka Kurdî de hunerek nenas kiriye

Hevpeyvîn: Agirî

*Hunera Kakrîkatorê di ragihandina giştiye cîhana îro de rolek giring û berfireh û bandorek mezin li danezana hizr, raman û nêrînên mirovan dilîze. Lewre me bi hewce zanî ku bi hunermendê karîatêrîst, Reuf Xetîbî re hevpeyvînekê çê bikin ku li xwarê dikeve ber çavê xwendevanan.*

**Kekê Reuf em dixwazin tu xwe ji bo xwendevanên agirî bidî nas kirin?**

Navê min Reuf, paşnavê min xetîbî ye û ez xelkê bajarê Urmiyê, ji dayîk bûyê sala 1981'e Zayînî me.

**Keko em dixwazin bizanin ku te jiyana xwe ya hunerî çawan dest pêkir?**

Ji ber vê çendê ku min gelek bi hunera karîkatorê re hez dikir her di dema zarokatiya xwe de min dest bi nîgar kêşanê kir. Di sala 2000'ê de min dest bi şola karîkatorê kir û min gelek serkevtin di vî warî de bi destve anîne.

**Me pêxweş e tu pênaseyekê li ser karîkator û dîroka vê bikî?**

Karîkator peyveke Yonanî ye, bi manaya "mubalîxe" yanî "îxraq"ê re hatiye girtin. Mînakên zor kevnê karîkatoran li şikevtan û li ser keviran hatine dîtin, ewe jî vê çendê dide kifşê ku ev hizra zêde ruyî (îxraq) her gavekê digel mirovan de bûye.

**Tu hunera karîkatorê di civaka Kurdî de çawa dinirxînî?**

Ez dikarim bêjim ku hunera karîkatorê di civaka me de hunerek nenas kiriye, hin kes karîkatorê tiştek biyanî û hin kes jî wê, bi emrazeke bê hurmetiyê dizanin, bi giştî em dikarin bibêjin ku di civaka me de hêj karîkator nehatiye nas kirin.

**Başe karîkator heya çi qasekê bandor li ser belavokan de heye?**

Di vî serdemî de karîkator cihê taybet di belavokan de heye û roleke zor baş dileyîze, herwiha karîkator di welatên demokart de dikare hemû arîşeyên civakê li ser rûpeleke rojnamê bide nasandin. Hunermendên karîkatorîst 3 çav hene. Karîkatorîst dikare bi çavê sêyem wan arîşeyan bibîne û bîne ser kaxezê di vê navberê de belavok baştirîn cih in bo belav kirina hizr û ramanên kesên karîkatorîst. Ku em dikarin bibêjin ev hizre pareke ji hizra hemû civakê.

**Keko para zafe karîkatêr yan berhemên te di çi warekê de ne?**

Hinek ji berhemên min taybet bi qata ciwana ne ku belke ji aliyê qata kal yan qata zarokan vê tu bayexek nebin, lê dikarim vê çendê bêjim ku heya qasekî baş pêşwazî li berhemên min hatiye kirin.

**Ew berhemên te heya çi qasekê ji aliyê temaşevanan ve hatine pêşwazî kirin ?**

bersiva vê pirsyarê dibe temaşevan bidin ez nikarim bêjim ku berhemên min ji aliyê hemû temaşvanan ve hatine pêşwazî kirin, an na.

**Peyva te ji bo ev ciwanên ku taze derketine holê, yanî taze têkilî hunerê bûne çiye?**

Ez dikarim bibêjim ku her hunerek li cihê xwe de pîroz e û ciwanên me dikarin ji rêya her hunerekê ve xizmet bi neteweya xwe bikin. Ez hêviyê dixwazim ku ciwanên me yên hunermend an jî yên teze dest bi hunerê dikin, bikarin şiyana xwe ya hunerî bi hemû cîhanê bidin naskirin.

**Kekê Reûf Ji bo vê hevpeyvînê, em gelek sipasiya te dikin û serkeftin û berdewamiyê ji te re bi hêvî dixwazin.**

Ez jî sipasiya we dikim bo vê derfetê ku we bo min pêk anî ku ez bikarim xwe bi xelkê û hunermendan bidim naskirin û hêviya serkevtinê jî bo rojnameya Agirî û birêveberên vê rojnameyê dixwazim.

Çend nimûne ji berhemên hunermend Reuf Xetîbî





## Gotinên mezinan

❍Dilop bi xwe cihê xwe çê dike.

❍Ne gundê bê rez, ne konê bê pez, ne mêrê dibêje ez.

❍Eger Beranê bisko bayî, vê ber derê babo bayî.

❍Hêvî, sed cara hêvî, li ber dijmin nebe rivî.

❍Mirina bi serbestî, xweştir e ji jîna bindesî.

❍Riviyê xwe nede Şêrê bîhanî.

❍Dûr here, silamet wegere.

❍Ardê xwe bide destê nanpêjan, bila nanek zêde here.

❍Heta mirov ser destan negere, qedrê pêyan nizane.

❍Ger xêr ji malê here, ne hewceyî mizgeftê ye.

❍Mih bi piyê xwe, Bizin bi piyê xwe, mirov bi kiryarê xwe.

❍Evê bêje û biket ev mêr e, evê nebêje û biket ev şêr e, evê bêje û neket ev kereke bê xêr e .

❍Cemedê bişkêne da ku ava sar wexoyî.

❍Evê ditirsît ev dipirsît.

❍Tê sotin lê nayê gotin.

❍Şûna Şêra, Rivî lê dikin gêra.

❍Marê pêvedayî, ji werîsê reş û sipî ditirse.

❍Kêm xorê dayim xor be.

❍Xwendin çirayê jiyanê ye.

❍Ev girêya ku bi dest webît, hewcehî bi didana naket.

# Cejna Newrozê, nû bûna jiyana Kurdewarî

Selîm Zencîrî
Selim_renberi@yahoo.com

Hemû gel û neteweyek li ser rûyê erdî xwediyê cejn û hilkevtên cur bi cur ên neteweyî yên xwe ne û gelê me yê zilim jêkiriyê Kurd jî xwediyê zaf cejnên neteweyî ye û yek ji wan ku bi hezaran sal e ji bab û kalên me bi diyarî ji mere maye û em şanazî û bîranîna vê jî pîroz dikin, cejna Newrozê ye.

Li ser Newrozê zaf hetiye gotin û tomar kirin û her kes û aliyekê bi awayekê şirove kiriye, lê tiştên ku di piraniya jêderan de îşare pê hatiye kirin eva ye: Di çax û serdemên Kevin de, Cemşîd Şa (cem anku çav, şîd anku tîrojk= çavê ronahiya rojê) 4'mîn Padişayê Pîşdadiyan dema ku li Azerbaycanê bi tancê xwe yê zêrîn li ser textê paşatiyê ber bi Rojhilatê ve rûnişt, tîrojka rojê tancê serê vî çirûskand û xelkê ev roje kirine cejn û dîlan û bi Newroz (nûroj-nîroz) nav kirin.

Lê eva ku zêdetir wek çîvanok li ser rawestane û bas jê hatiye kirin eva ye ku piştî Cemşîd Şa paşayek bi navê Ejdehak(Zohak-dehak) dibîte Fermanrewayê felata Îran û Turkistanê, û bi mîrekî zalim û sitemkar hatiye nas kirin. Dibêjin ew paşaye hevrîşê nexweşiyekî negrîs û kuşende dibe ku du Ejdehayên mejîxur li ser her du milên wî şîn dibin û diviya hemû rojê mejiyê du mirovan - tenê bi mejiyê ciwanan razî dibûn, ji ber vê ku texa law di her civakekê de, çalaktirîn û zindîtirîn qat in di diyarî kirina pêşeroj û bi destve anîna armancên pîroze gel, heger ew jî neman ew gele bi pîr û bi salda çûyan ve najît û tuxmê wî jî nav diçe - xwariban heta ku zohak veheviya ba û ji êş û azara her du maran rizgar bibe.

Bê guman berdewamî û domandina vî karî jiyana xelkê xistibû ber tirs û xofê û hevrîşê hezaran nigeranî û arîşe û malwêraniyê kiribûn, lewma Kaweyê asinger li heyfa serbirîna dûlandikê cigera xwe, mencela sebr û berxwedaniya wî hate kelînê û kewlê berkoşa xwe kire ala û bi hevkariya Fireydûn û bab û daykên cerg sotî û ew xortên ku ji ber zilm û zora Zohak, ber bi dol û çiyayên her tim yar û pişt û penayê Kurdan hilatibûn, camêrane li hemberî zalim û sitemkaran rawestan û êrîş birine ser text û tac, koşk û talarê Zohak û bo hata hetaye ji nav birin û heyf û tola hezaran xortên bê guneh, ji wî sitemkarî sitandin.

cudahiya bîr anîna Newrozê di navbera Kurd û neteweyên din hil kirina agir e



Lewma xelkê wî serdemî her bi bihîstina wê nûçeyê di herêm û bajar û gundan de, li ser kopka çiya û bilindahiyan gurî û peşqela agirê xweşî û serbestiyê bilind kirin û bi rojeke xweş û pîroz hesibandin û agirê Newrozê kirine dirûşma azadî û serxwebûn û xwe gorî kirinê, ku mîna meşxeleke ronahîker e ku rêya teng û tarî bo wan ronahî diket.

Lê rastiya digel efsane (çîvanok) têkel bûye dîroka me vê hikayetê wisa bo me vedigêrît ku wê roja ku ew bûyerane qewimîn, yekem roj ji demsala bihar (21'ê Adar)ê bûye û her di vê rojê de ye ku piştî zivistaneke sar û seqem, sirûşt kifnê sipî ji ber xwe dertîne û dewrana êxsîrî û bendî bûna giştî rihberan bi domahî tê û berfa ser çiyayan diheliyêt û mêrg û çîmen, gul û giya, kanî û rûbar ji nû ve divejiyên û bi berg û rengên bedev dixemilin û dibine mêwanê xaka Kurdistanê. Lewma gelê Kurd tevî gelên din yên Îranê, Tacîkistan, Azerbaycan, Tirkimenistan, Qirqîzistan, gelên Blûç û Peştûn li Pakistanê, gelên Sind û Pencab li Hindê bi biçûk û mezin, pîr û law ve di 21'ê Adara hemû salekê de bi egera serkevtina ronahî û maf û dadê bi ser tarîtî û zilm û bêdadiyê û herwiha nû bûna sirûşt ber bi pêşwaziya cejna Newrozê ve diçin û xweştirîn û bedewtirîn aheng û govendan li dar dixin.

Kite cîwaziya bîr anîna Newrozê di navbera Kurd û neteweyên din de eve ye ku Kurd agir hildikin, lê neteweyên din agir hil nakin. Herwisan pêwîst e were gotin ku dagîrkerên Kurdistanê jî li dîtingeha Îslamî ve bi diyarokek dijberî olê Îslamê dihesibînin û bi vê hêcetê dijberiyê tevî dikin, lê gelê Kurd bi xebat û têkoşîna xwe li hin parçeyên Kurdistanê roja Newrozê bi fermî daye nas kirin, bo mînak li Başûrê Kurdistanê sala 1931'ê, li Rojavayê Kurdistanê jî piştî sala 1983'ê wekî roja dayîk hatiye nas kirin. Li Bakurê Kurdistanê piştî hin givaş û senyî yên xebatkarên Kurd, li sala 1996'ê ve wekî roja fermî li yasayê de hatiye naskirin.

Dibe em hest bi mezinahî a neteweya Kurd bikin ku çawa hetanî niha li hemberî sitemkar û zilmên serdem rawesta ye û vê rojê bikine roja xwenasîn û bixwe de hatin û ji hev kirina dost û neyaran, û êdî Newroz tenê nebe hikayet û çîvanoka ser devkiye xelkê û Newroza bihar û gul û golezar û edeba kilasîkiya Kurdî, Ji ber ku dibe Newroza çîvanokî, rastî, nû bûna sirûştê, xebat û serkevtin bibe hêvênê xebta azadîxwazî û makê şiyariya neteweyî û bibe çeka berxwedaniyê dijberî neyarên Kurdistanê.

Bi hêviya ku di demekî zû de xebata berheq û rizgarîxwezaneya gelê me bigihîje qeder û armanca xwe û Newroz ji gelê me rast vegere û xaka Kurdistanê bi azadî û serbestiyê şa bibe û demokrasî û dadperwerî tê de cihgîr be.

## Weşandina 2 CD yan bi boney cejna Newrozê







2 sêlik (CD) bi navên Rûgeha Azadîxwazan û hewara Azadîxwazan li ser jiyan û ramanên rêberên şehîd yên gelê Kurd, Dr. Ebdulrehman Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî, ji hêla birêz Ebdurezaq Murad Azer ve hatin berhev kirin û bi boneya Newrozê, cejna neteweyiya Kurdan pêşkêşî gel hatin kirin. Kekê Ebdurezaq derheq berhev kirina van berhemane dibêje: " Heyamê 3 sala ye ku ez mijolê kom kirina wêne, gotar, lêkolînên ser jiyan û ramanên wan du şehîdên mezin yên tevgera rizgarîxwazî a gelê Kurd li Kurdistana Îranê me, ta ku min karî bi boneya cejna newroz û sala nû ya Rojî sêlikan pêşkêşî gel bikim".

Herwiha Kekê Ebdurezaq derheq armancên weşana van 2 sêlikan dibêje: "Armanca min ya bingehîn nasandina pitira van 2 kesayetiyên mezinê gelê Kurd û rêzgirtin ji xebat û têkoşîna van e, ta ku nifşên pêşerojê agehdarê xebat û tekoşîna van lehengên civaka xwe bibin."

Desteka rêveberiya Rojnameya **Agirî** seba berhev kirin û weşandina van 2 berhemên nû pîrozbahiyê ji birêz Ebdulrezaq Murad Azer dike û serkeftinên pitir jê re bi hêvî dixwaze.

# Newroz û helbesta Kurdî

Amadekar: Emîr Şuaîwend

Helbesta Kurdî li serdemê zor Kevin mil bi milê neteweya Kurd de hatiye û di xem û kovanan û her wisan di cejin û şahiya gel da pişikdar û pêşeng bûye ji ber dagîr bûna welat bi destê dagîkeran û zilm û zora çend sed sale ku bi ser gelê me da hatiye sepandin, helbestvanên Kurd pûteyeke zor bi nasyonalîzma Kurdî, xak, ziman, kultur û cejin û nerîtên neteweyî dane. Yek ji wan cejnane ku helbestvanên Kurd nexwestine wiha bibe yan bikeve destê gelên din cejna Newrozê ye ku cihê teybete xwe di helbesta Kurdî de heye. Em dikarin bibêjin ku hemû helbestvanên neteweyiye gelê Kurd bi vê roja pîroz helbest gotine û her yek ji wan li gor serdemê xwe pesnên cur bi cur ji Newrozê re kirin e.



Ehmedê Xanî helbestvanê neteweyiye gelê Kurd di helbesta xwe ya ***ser sal*** de vejîna xuristê û her wisan ciwaniya wê û pêşwazî kirina kurdan ji vê rojê dikêşe ser kaxez û bi peyvên resen û pir mana vê helbestê dixemilîne:

**Weqtê weku şehsewarê xawer**
**Tehvîl dikir di mahê azer**
**Yanî ku dihate bircê sersal**
**Qet kes nedima di mesken û mal**
**Roja ku dibûye eydê newroz**
**Teezîm ji bo dema dil efroz**
**Sehra û çemen dikirne mesken**
**Beyda û demen dikirne gulşen**

Kurdan ji bo agir rêz û hurmetek taybetî hene, bi taybet di roja Newrozê da ji ber ku Kurd bawerin remza serkevtina Kaweyê Asinger û Fereydonê Kurd girêdaî ye bi ronahiya agir. Mamosta Goran helbestvanê netewî ye Kurd di helbesta "cejna Newrozê" da pêwendiya agir û Newrozê bi hevra wiha dinirxîne:

**Be surêkîtir estêrey nîsangir**
**Qewmî Kurdî xistewe cejnî agir**
**Kam qewmî kon kam cejnî berz û pîroz**
**Qewmî Madî ! cejnî bilindî newroz !**
**Ev newrozeye ke hezaran behare**
**Le dêy kurd da girî agir diyare**
**Bav bapîranman heta eron piştav pişt**
**Lem agireyan dewre dawe, çîn, çîn, gişt !**

Newroz li bal Kurdan senbola serkevtin û aştî û azadiyê ye her Kurdek li dinyayê de di vê roja pîroz bîr ji aştî û azadî û welatekî azad dike her ji ber vê çendê xebata Kurdan ji bo serkevtinê geş û xurtir dibe.

Pîremêrd helbestvanê bi navdarê Kurd di pesna Newroza azadiyê de dibêje:

**Eva roja sala teze ye, newroz hatiye**
**Cejna kevne Kurd e, bi xweşî hatiye**
**Çend sala gula hêviya me best bû heta par**
**Her xwîna lawan bo gulava nû bihar**
**Vî rengî sore bû ke asoyê bilinde Kurd**
**Mizgîna beyanê bo gelê dûr û nêzîk bir**
**Newroz bû agirekî weha xiste nav ceger**
**Lawan bi eşq diçûn pêşber mirin**

Yekek din ji helbestvanên gelê me Mamosta Osman Sebrî ye ku ev jî mîna helbestvanên din, Newrozê roja aştî, azadî û vejiyana gelê Kurd dizane û dixwaze ku di vê rojê de zilm û bêdadî nemîne û gelê wî rizgar bibe ji destê dagîrkeran:

**Newroz cejna Rojhilat, bîst yekê Adarê**
**Ev bû sersala kurdan di destpêka biharê**
**Rabû Kaweyê hesinger bi şorişa azadî**
**Dehak têda hat kuştin di Îranê bû şadî**
**Çi zîvar û belengaz, ceweleke tev civandin**
**Bi camêrî yek destî nîrê sitem şikandin**

Pişkek berbiçav ji dîroka gelan helbestvanên van ên dêrîn û neteweyî diyar dikin. Di demên zor Kevin hetanî niha ku welatê me bi destê dagîrkeran ve hatiye zevt kirin û ji ber vê çendê ku gelê me tu car neçûye bin fermana dujminan, Kurdistan hemû demekê cihê şer û kêşeyan bûye û her ev şerane û kuştina zana û xwedî hizrên gelê me bûye egera vê çendê ku zaf helbest û destnivîsên dîrokiye gelê me werin şevitandin yan jî winda bibin, lê Kurd tu caran li têkoşîna xwe ne sekinîne û hemû ev rojên dîrokî û rewş û tîtalên Kevne Kurdewarî ji bîr nekirine û hembêz bi hembêz gerandin û ciwan ciwan parastin. Yek ji van rojên dîrokî û neteweyî ye gelê me cejna Newrozê ye ku hemû salê bi ciwantirîn pergalan di seranserê Kurdistanê de bi rêve diçe.

Mihemed Resûl Hesenpûr

# Ezîza min

Li bîra te ye caran min û te, me her duyan çeka berevaniyê dabû milê xwe û em bi hevre dengê heq û azadiyê bûn û me şeva zilmate tariyê şeq dikir û dijminê ronahiyê rev dêxist.

Li bîra te ye caran min û te li bajar û gund, li çiya û nizaran, heta li dûr welat da jî me kincê pîroze pêşmergatiyê li ber kirbûn û bi xemlek e bedev û bi hevre em rêvîngê neweste rêya azadî û xelasiyê bûn û me bi hev re Fîncana azadiyê Fir dikir.

Delala min! Her qas niha dujminan ez û tu ji hev weqetandine, lê bizanbe ji her demekê pitir guhê min li tikêna dilê nazik û dengê bi soze te ye, min hay jê heye ku wan Gurên birsî çawan xewa asûdeyî ê ji çavên geş û bedewe te werandine, dizanim gund û bajar û kolanên te çawan bi pêlawên pîs e kore peleçemkên dax ji dil hatiye herimandin.

Çav geşa min! zor hez dikim û bo gihîştin bi wê hezê jî bi dil û can dixebitim da ku em bi hevre cejna serkevtinê bigirîn û hingê eger bo demek kurt be jî, ez bi xatircemî di hembêza te da rakewim.

Bê şik hinde nemaye ku guriya agirê Newroza te li ser kopê çiyayên serbilinde: Bêsitûn, Şaho, Çilçemal, Nekeroz, Arbaba, Zimzîran, Giyareng, Qendîl, Kêleşîn û Agirî... ve ronahiyê bêxe nava dilê pir ji hêvî û hesrete min.

Nazdara şox û şenge min! xeman neke, rondikan ji çavên bi xeme xwe nebarîne, çavnihêr be heta digehime te û bi hevre dawiyê bi şeva reş û tariye nehatiyê bînin. Dizanim rêvîngên bi emeg û çavnetirse rêya şehîdan amadeyî can goriyê ne.

Wê carê jî ezê bihêm bal te û serê xwe danêm ser dilê pir soze te û demekê bi rihetî razêm. Ezê bêm û emê bi hevre xewê ji çavê wan xêr nexwazan biherimînin.

Xweşteviya min Kurdistan can!

Gerçî perên pirtûka temenê min ber bi istûr bûnê diçin, lê lingên min ji bo dawî înana rêya gihîştin bi te ji caran bi qawettirin. Niha jî zend û baskên min ji xwere dibînin ku helgirê ala azadiyê bibin.

Xatircem be! Ezê bihême bal te û emê bi hevre bigirine govenda serkevtinê û stirana azadiyê bistirin.

Xatircem be! Wê carê te cî nahêlim û emê bi hevre bikin hewar û bêjin, "Bijî Partiya Demokrat, nîşana derê rêya xebatê ..."

Ho kurdistana çav geşe min! Ezîzê min!... xwatir cem be, çavnihêr be ezê bême bal te.

# Roja cîhaniya Jinan û rewşa Jinan di Îrana Îsalmî de

Dara Natiq
Dara_enzeli@yahoo.com

Yekem car ku 8'ê Adarê weke roja cîhaniya Jinan hate bi nav kirin, li konferanseke Jinan di sala 1921'an de li Kopênhagê bû. Lewma li wî çaxî vere hetanî niha her sal di 8'ê Adarê da, jinên cîhanê roja xwe pîroz dikin û doza wekheviya aborî, civakî, çandî û siyasî tînin ber bas û li gelek welat û bajaran, xwenîşandanên Jinan ji bo bi dest xistina mafên wekheviyê di hemû warên jiyanê de pêk tên.

Îsal 8'ê Adarê di çaxekê de wek roja cîhaniya Jin di seranserê cîhanê da tê pîroz kirin ku li ser bingeha ragehandina Rêxstina Neteweyên Heybûyî, her salê 700 hezar mirov, ku piraniya wan jin û zarok in, li rêya xapandin, zorî, dizî yan jî bi kirîn û firotina wan weke koyle (berde) bo mifah wergirtina xirab ya cinsî li cîhanê da qaçax dibin.

Tevî vê yekê ku zaf ji welatên cîhanê bi dest pêre gihîştin bi pêşkeftinên nûjen, cehd û tekoşîneke zaf ji bo pêk anîna wekheviya mafê Jin û mêran kirine, lê belê cîhan niha jî şahidê zilm û zoriyên cur bi cur dijberî jinan e heta di welatên pêşkevtî de jî.

Kuştina zarokên mê, kirîn û firotin, qaçaxa jinan û kuştina bêwejinan bi meremên malî, ji wan tund û tîjiyane ne ku jin di dirêjahiya jiyana xwe de tevî vê yekê berengar bûne. Tund û tîjî dijberî jinan tenê di lêdan û kutanê da dawî nahê û nabe, ji ber ku azardana rohî, dijûn dan, pûyte nedan bi wan, cudahî danan di navbera keç û kuran de, pêşî pê girtin ji pişikdariya wan di kar û barên welat û civakê de, dûr ragirtina wan ji pirsên girîng û ... hemû ewane, ji wan tund û tîjî, yan pelçiqandin û ferq û cudahiyan in, ku derheq bi jinan tê kirin.

**Ferq û cudahî dijberî jinan li Îranê di warên cur bi cur ên çandî, aborî û siyasî da dimeşe**

Îran jî yek ji wan welata ye ku her tim zilm û zorî û tund û tîjî derheq jinan tê de hatiye kirin, bi taybet piştî hiloşîna rejîma Paşatiyê û hatine ser kara Komara Îslamî a dîktator, tewahiya bizavên jinan ketiye bin zêrevaniya vê rejîmê û bi dirûşmên weke dijberî tevî fesada civakî, xebat dijberî bi nav êrîşa çandî a Rojava û dijberî tevî riftar û bedhîcabiyê ye. Azadiyên kesî û mafên civakiye jinan ji wan hatiye zevt kirin. Li bin navê wan dirûşmane da ye ku di heyamê deshilatdariya Komara Îslamî da bi hezaran jinên Îranî bi guneha li berçav ne girtina wan kevneşopiyan hatine heps, îşkence, îdam û kevir baran kirin. Ev pêvajoye jî di heyamê serkomariya Xatemî de ku wek rêberê



Yasa û deshilata Komara Îsalmî jiyan li Jinên Îranê tal kirine.

baskê reformxwaz hatiye nas kirin her wisan didome.

Tund û tîjî bi dijî jinan di Îranê da bi egera hebûna rewişt û tîtalên kevin û paremayî û têkiliya ol û siyasetê, zêdetir ji jinên din ên cîhanê tên xuya kirin.

Bi awayekî giştî jin di Îranê da, di bin deshilata komek tund û tîjiyan de ne, ku bi tewahî tevlî saluxên paremayî ên olî û xeyre oliyan bûne. Pêçeqandin li ser cuda kirina keç û kuran li binkên çandî, zanistî û werzişî da û her wisan pêşî pê girtina jinên hozanvan ji gotina sitran û ..., nebûna mafê xwe berbijêr kirina jinan bo postên desghilatdariya welat mîna serkomarî û ..., hemû ev ferq û cudahiyane ne ku bi dijî jinan di Îranê de birêve diçin. Li Îranê û Kurdistana Îranê jî, serbarê vê hindê ku rayedarên kevneparêz ên Komara Îslamî çavê dîtina hevbendiya jinên Îranê, tevî jinên cîhanê û bi fermî nas kirina vê rojê tuninin, lê belê rêz û hurmet girtin ji roja 8'ê Adarê sal bi salê zêdetir di nav civaka me de geş û xurtir dibe.

Rê û resmên 8'ê Adarê di cîhanê de bûye derfetek bo nirxandina hemû wan newekhevî û estem û cinayetên ku bi piştgîriya yasa û deshilatê û bi navên cur bi cur bi dijî jinan bi rêve diçin.

Hejî gotinê ye ku li kom û civîn û gotar û berhevdanên vê rojê de, jinên têgehiştî û cesûr, xebatkarên daxweza azadî û wekheviyê carek din dengê xwe tevlî dengê hemû hogirên rizgariya jinan li tewahiya cîhanê de dikin û daxwazkarê mafê wekhev di navbera jin û mêran da ne.

Jinên Îranê bi xebat û tekoşîna tev aliye xwe, bi Komara Îslamî dane selimandin, ku ji jinên cîhanê cuda ninin û hemû ev maf û azadiyên ku civaka cîhanê bo jinan bi fermî dane nas kirin, mafê bê qeyd û bende wan e û divê ev mafe bi wan bihête dan.





agiri

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 5, Marcha 2004

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
Rojnama_agiri@yahoo.com

Fax: 0012703425105

Bo Agirî binivîsînin

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket. Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.

# Daxuyanî

## Seba mor kirina yasaya birêve birina dewleta demî a Îraqê



Hevwelatî ên birêz!
Civatên xebatkare xelkê Kurdistanê!

Piştî zêdetir ji du mehan nîqaş û gengeşeyeke zaf li ser gelaleya yasaya birêve birina dewleta demî a Îraqê, roja duşemî 1'ê Marcha 2004'ê Zayînî (19.12.1382'e Rojî) ew gelale pejirand û ji bo îmza kirinê hate berhev kirin û qirar bû piştînîvroya roja înê 5'ê March'ê di rê û resmeke xasmanî de bihê îmza kirin.

Lê çend demjimêr pêş dema îmza kirinê bi sedema derketina hinek asteng û arîşeyan ew rê û resm bo roja duşemî 8'ê March'ê hate paşda xistin û aqibet demijmêr 1:30'ê piştînîvroya dohî, duşemî 18'ê Reşemeya 1382'e Rojî (8'ê Marcha 2004'e Zayînî) di rê û resmeke xasmanî û li ber çavê hejmarek kesayetiyên biyanî û nûçegihanan de yasaya birêve birina dewleta demî (berwext) a Îraqê ji aliyê 22 endamên Civata Deshilata Îraqê û nonerên sê endamên din yê wê civatê bi fermî hate îmza kirin.

Mor kirina zagona birêve birina dewleta Îraqê gavek ber bi zivirandina deshilata Îraqê bo Îraqiyan tê danîn û bi ji ber çav girtina ev asteng û arîşên ku ji hinek hêlan ve bo sernegirtin û sernekeftina wê pêk hatin, bi serkevtineke mezin bo xelkê Îraqê û gelê Kurd di wî welatî tê hesibandin.

Doma wê bo rûpelê 12

## Xwe rizgar kirina serbilindaneya çend xebatkarên demokrat ji girtîgehên rejîmê

Demjimêr 11'ê pêş nîvroya roja duşemî 25.12.1382'e Rojî, bi egera xwe rizgar kirina serbilindaneya çend xebatkarên demokrat ji girtîgehên rejîmê, civîneke berfireh bi pişikdariya Sekreterê Giştî, hejmarek ji endamên D S û rêveberiya Partiyê û sedan kes ji kadr û pêşmerge û malbatên wan, di yek ji salonên DS a partiyê pêk hat. Di vê rê û resma berfireh û xweş de, li pêş de bi xêr hatina rizgar bûyan û vegeryana wan bo hembêza partiyê û piştre Birêz Ebdula Hesenzade Sekreterê Partiyê, axaftinek dewlemend derheq awayê rizgar bûna van pêşkêşî pişikdaran kir û her wiha sipasiya hemû ev kesane kir ku di pêvajoya vê gava mirovî û azadîxwazane de xwe mandî kirine.

Piştî axaftina birêz mamosta, yek ji rizgar bûyan bi noneratiya ew xebatkarên rizgar bûye din, sipasiya partiyê û hemû ew xemxur û dilsojan kir ku ji bo rizgar bûna van ji girtîgehê û derçûn ji hikmê îdamê alîkarî kirine.

Hêjayî gotinê ye ku ev rê û resme bi rêve çûna çend bernameyên hunerî û bi govenda keç û xortên ciwan çend demjimêran dom kir û di nava şahî û kêfxweşiya bê mînake pişikdaran de dawî pê hat.